Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 59
15'ê Adarê
Buha: 150 Tûmen




Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Kuleçarşemî Bi Coşeke Mezin Hate Pîrozkirinê



Li piraniya bajarên Kurdistana Îranê, gelê Kurd di şeva Kuleçarşemiya îsal de, bi coşek germ û mezin agirê Newrozê hil kirin, şîrînî û şekrok belav kirin û bi vî awayî çûne pêşwaziya Newroz û sala nû xatira xwe ji sala çûyî xwastin. Di binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê de jî, Pêşmergeyên Kurdistanê bi hildana agir û govend û şahiyê çûne pêşwaziya Newrozê.

# NEWROZA WE PÎROZ BE
















Newroz car din dibe mêvanê Kurdistanê. Bêhna xweş ya xwezayê deşt û newal, gund û bajarên Kurdistanê dadigire, bêhna gul û beybûnan mirov serxweş û sermest dike. Belê Newroz e, demsala rengîniyê ye. Zivistana sar û tarî, car din jiyê xwe ji Biharê re hêşt.

Gelê Kurdistanê bi şadî û meraq ve pêşwaziya Newrozê dikin. Newroza ku mizgîniya şadî, rengînî û nûbûna xwezayê dike diyarî.

Lê mixabin gelê me di Kurdistana Îranê de Newroza xwe di bin sîbera reş ya hikûmeta reşpûş de pîroz dikin. Rejîma ku rengê reş, rengê dilwaze wê ye. Gelê me îsal jî li bin tirs û hovîtiya rejîmê de bi pêşwaziya Newrozê diçin û vê cejna neteweyî pîroz dikin. Îsal jî her wek salên berê zulm û zora rejîma Îranê reng û rû û tama Newrozê kin kiriye, bêkarî û giraniyê li Îranê de sifreya xelkê ji rengîniyê bêpar hiştiye. Dûriya gelek kes û ezîzên ji bav û dê û malbatên xwe, qursayiyê dixe ser dilê wan. Belê Newroz cejna renga ye û bi reşatiya hikûmetê di Îranê de nateba ye.

Du cîhanên dijî hev in, lewra sifreyên xelkê ji rengîniyê vala dikin û kincên reş bi xelkê Îranê û bi taybet Kurdistanê dikin. Çalakvan û azadîxwazan digirin heya ku di damana xwezayê de geş û serbest nebin.

Lê serbarê zext û tund û tûjiyên rejîmê, gel Newroza xwe rengîn û xweş derbas dikin, kincên nû liber dikin. Bêedaletî û reşatiyê ji xwe dûr dikin û zistanê pişt guh davêjin. Peyama biratî û yekîtî û piştevaniyê bi gelê xwe re dubare dikin û rûreşiyê tenê bo zalim û hikûmeta reşperest ya Komara Îslamî ya Îranê bi cih dihêlin.

Em pîrozbahiyên xwe yên herî germ pêşkêşî neteweya Kurd dikin û hêviya me ew e ku sala nû bibe sala serkevtin, aştî, azadî û dadperweriyê.

**Newroz cejna neteweyî ya Kurdan pîroz be.**

**Desteya Weşana Agirî**
**Newroza 2007'an**

## Sê Ronkirin Ji Aliyê PDK Îranê:

Li Ser Buxtaneke Neheq Ya Ebdula Hesenzade Di Kovara Livînê De R: 3

Derheq Hevpeyvîna Sekreterê Giştî Yê Partiyê Tevî Rojnameya "Le Monde" R: 3

Siyaseta Şerfirotinê Bi Armanca Xwe Nasandinê, Îflasa Siyasî Ye R: 6

## Li Qamişloyê Şehîdên Serhildanê Hatin Bibîranîn



Dora pênc hezar welatiyên kurd piştî nîvro 12.03.2007'an li goristana Qudurbeg li Qamişloyê li hev kom bûn û şehîdên Serhildana 12ê Adarê bi bîr anî. Ligel amadebûna hejmareke mezin ji hêzên ewlekariyê yên rêjîma Sûriyê, tu pirsgirêk çênebûn. Beşdaran wêneyên şehîdan hildan û dirûşm berz kirin. Partiyên Yekîtî, Azadî, Şepêla Pêşerojê û PYD ev çalakî amade kir. Piştî ku çalakî bi dawî hat, hêzên ewlekariyê bi xaza rijandina hêsiran êrîşî xelkê kir, da ku wan ji hev belav bike. Malpera Amûdê hin dîmenên vê çalakiyê li vê derê diweşîne. **amude.com**

**Rêzdar Ebdula Hicab:**

# "Endambûna Me Di UNPO'ê De Gava Yekemîn Ber Bi Fermînasîna Nasnameya Neteweya Kurd E"

**Hevpeyvîn: Selîm Zencîrî**

***Piştî cehd û tekoşînek zaf ji aliyê PDK Îranê bona endametî di Rêxistina UNPO'ê de li bervara 4'ê Şibata 2007'an ve PDK Îranê wekî endamê eslî û nûnerê Kurdên Kurdistana Îranê di vê rêxistinê de tê naskirinê û kursiya xwe heye. Rêxistina Neteweyên Bênûner, rêxistinek demokratîk, aştîxwaz û azadîxwaz e ku bona rizgariya neteweyên Bêdewlet û bindest xebat û karhêsaniyê dike.***

***Derheq endametiya PDK Îranê di vê rêxistinê de û herweha nasîna bêtir ya vê rêxistinê û zaniyariyên berfirehtir li vê derheqê de, me bi siyasetvan û nûnerê PDK Îranê di UNPO'ê de, birêz Ebdula Hicab re hevpeyvînek pêk aniye ku li jêr de dikeve berçavê we xwendevanên hêja.***

**Bi raya we "UNPO" çi pîvan û taybetmendî û fakterekê bo bi endamwergirtina partiyekê bi bingeh digire, bo mînak ji bo endamwergirtina PDK Îranê?**

Gelek sipas ji bo ku we ev derfet pêk anî heta bi rêya Rojnameya Agirî, em hin zêdetir ronahiyê bixin ser endametiya PDK Îranê li Rêxistina Netewe û Gelên Bênûner (RNGB) an "Unrepresented Nations and Peoples Organization" (UNPO).

Endametî di UNPO'yê de berî her tiştî girêdayî wê yekê ye ka aliyê daxwazkerê endametiyê heta kuderê pîvan û dîtinên bingehîn yên rêxistinê parve dike. Pîvanên sereke yên endametiya rêxistinê pêk tên ji xebat ji bo bicihkirina Mafê Mirovan, Demokrasî, Mafê Diyarîkirina Çarenivîs, parastina Jîngehê û tehemulkirin an tolerans. Ji bo bicihkirina wan pîvanan, UNPO rêbaza şidetê napejirîne. Wekî din, li gorî bernameya rêxistinê, partî, tevger an rêxistina ku bi nûneriya gelê xwe daxwaza endametiyê dike, hewce ye 6 mercan bicîh bîne:

a) Bawerî bi wekheviya hemû netewe û gelan re hebe û ji mafê diyarîkirina qeder û çarenivîsa wan bi destê xwe re hurmetê bigire,

b) Pîvanên cîhanî yên mafê mirovan biparêze. Ji wan bingehan: Daxuyaniya Cîhanî ya Mafê Mirovan (DCMM) an UDHR, Daxuyaniya Mafên Medenî, Siyasî û Aborî, Mafên Civakî û Kulturî, Daxuyaniya Neteweyên Yekbûyî li ser mafê Kesên girêdayî bi Netewe an girûpên Qewmî, Kêmaniyên Olî û Zimanî û Pêşniyar Daxuyaniya Neteweyên Yekbûyî li ser mafê Gelên Xwecî ku ji aliyê Konseya Mafê Mirovan ya NY ve hatiye pejirandin,

c) Bawerî bi pîvanên pirrerengî an pluralîzma demokratîk re hebe, xwe ji hemû şêweyên tevaxwazî (totalitarîzm) biparêze û hemû rengên zêdegavî û hevudin tehemulnekirina olî mehkûm bike;

d) Xwe ji reşekujî an terorîzmê, wekî rêbaza xebata siyasî dûr bigire;

e) Ji hemû kes û gelan re, di nava wan de girûpên kêmanî û zorahî ku di herêma gelên ew rêxistinên nûneratiya wan dikin, de dijîn, lê ser bi girûpên qewmî, olî an zimanî yên cihê ne, hurmetê bigire;

f) Demokrasiyê pêşve bibe, xwe ji rêbazên şidetê dûr bigire û desthilata qanûnê biparêze.

Her rêxistinek ku wan pîvanan neparêze û ji bo pêşvebirina wan nexebite, nikare bibe endamê UNPO'yê.

**Gelo em dikarin vê endametiyê weke hitbar û bawerînameyeke dîplomatîk bihesibînin?**

Bê guman. Wergirtina Partiya Demokrat




wekî endam di UNPO'yê de îmkanek xurt dide Kurdên Rojhilata Kurdistanê ku bi Gel û Neteweyên hevqeder ê xwe re di asta cîhanî de şêweyek ji dîplomasiya gelan damezirîne. Em wekî gel derfetekê bi dest dixin heta ku ne tenê êş û azarên xwe, herweha pênase, dîrok, cografiya û îradeya xwe ji bo bidestxistina mafên neteweyî ji cîhanê re bidin nasandin.

Her deriyek ku bi ser dîplomasiya Kurdî de bê vekirin, nîşaneyek e ji baweriya derdorê bi xebata me ya neteweyî ye. Dema alî an partiyek daxwaza endametî di rêxistinên damezirî yên cîhanî de dike, mercê pêşîn ku tê nirxandin, ew e ka daxwazkar heta ku xwediyê gotinên xwe û wê siyasetê ye ku îdiya dike. Têkoşîna berdewam û micid her tim xwe bi bawerî dan û bawerî standinê re dide kifşê. Meşrûiyeta xebata gelê Kurd û PDKÎ bi wê rêyê re hin zêdetir tê nas kirin û tirîbûnek hêj xurttir bi dest dixe.

**Gelo endametiya li vê rêxistinê de dikare bibe bi bingehek bo bi fermînasîna pirsa kurd li Kurdistana Îranê derheq diyarîkirina mafê çarenivîsê?**

Mîna ku di bersiva pirsa we ya duyemîn de jî hate gotin, ew destkevt nîşaneya meşrûbûna xebata me ya neteweyî û gavek giring e ji bo avakirina hevbendiyek cîhanî bo bi fermînasîna nasnameya neteweyî ya Kurd bi giştî û rewşa gelê me di Rojhilata Kurdistanê de bi taybetî. Mirov dikare bêje eva gava yekemîn ber bi fermînasîna nasnameya netewî ye. Her weha sitarek xurt e li hember hewlên dewletên desthilatdar ji bo kêmrengkirina daxwaziyên siyasî yên gelê Kurdistanê û biçûkkirina statuya neteweyî ya gelê me ji **netewe** re bo girûpek qewmî, zimanî an kêmaniyek di coxrafiyayên siyasî yên hatî damezirandinê.

**Bi nîsbet navneteweyîkirina pirsa kurd û derxistina vê pirsa girîng li çarçoveya welatan de, rêxistina UNPO'ê dikare çi rolekê bilîze?**

Rêxistina Netewe û Gelên Bênûner, tirîbûnek hevbeş ya cîhanî ye ku di asta navneteweyî de dixebite. Di çarçoveya xebata xwe de rêxistin bi hemû dezgeh û saziyên navneteweyî re, ji Neteweyên Yekbûyî re bigire, heta Rêxistinên ne Dewletî (RND an NGO) û saziyên parastina Mafê Mirovan re di nava danûsitandinê de ye. Ew yek derfetek bêhempa diafirîne heta gelê me jî bikare ji bo meşrûiyet pêdana daxwaziyên xwe yên neteweyî û rêbazên xebata xwe piştgiriyê bistîne.

**Sedemên direngketina endametiya PDK Îranê, serbarê dîrokek dûr û dirêj ji xebat û tekoşîn û qurbanîdan di Kurdistan a Îran de bo çi vedigere?**

Bi derengketina wergirtina endametiya Hizbê, bi pir sedeman ve girêdayî ye. Ji xwe, UNPO dibû lêkolînên xwe yên asayî li ser daxwazînameya Hizbê bimeşîne û di karê bîrokratîk de ew yek dem digire. Her

çend pêwendiyên elektronîkî astengiyên ser rêya veguhestina agehdariyan rakiriye, lê dîsan jî biryarên hevbeş pêwîstî bi diyaloga berdewam û li hev kombûnê hene. Endamên Konseya Serokatiya UNPO’ê bi awayek berfireh di çar parzeviyên cîhanê de dijîn. Serok ji ”Ogoni” ya Afrîqa, cîgir ji Taiwan a Asiya û endamên Konseyê ji Ehwaz, Tibet, Komara Abxaziya, Zanzibar, Scania (Swêd), Uyguistana Çînê, Mapuche, Massai û Ximir Kromê ne. Ji bo wergirtina endametiyê hevdengiya wan pêwîst bû û ew jî girêdayî îmkanên pêwendîgirtin û li hev civiyanê ye.

Lê pirsên hundirîn û dij înformasyon jî hebûn. Her weha meseleya dîtinên cuda di navbera endaman de li ser pêwendiyên navbera gelên herêmê, wekî gelên Kurd, Ereb, Fars, Turk, Azerbaycanî û wd hebûn. Ew yek bibû hegera dudiliyê ku ew tirs xurt dikirin kêşeyên herêmê derbazî nava rêxistinê bibin. Ji bo ku bawerî bê dayîn heta ew mijar çareser bibin, kar û dem pêwîst e. Her weha dibû daxwazkar bi xwe jî berdewam li ser daxwaziya xwe raweste û mijarê teqîb bike. Bi komkirina hemû sedeman tê famkirin ji ber çi, pêvajo weha dereng ket?

**Pêwendiyên vê rêxistinê bi Neteweyên Yekbûyî re bi çi awayekê ye?**

UNPO bi Neteweyên Yekbûyî re di nava diyalogek berdewam de ye û her tim brîfîng an kurteagahiyan dide saziyên ser bi Neteweyên Yekbûyî. Ew agahî ji bo biryarên NY li ser mijarên mafê mirovan û yên di derbarê jîngeh û mafê gelên xwecî de pir giring in. Di wê barê de têkiliyên xurt bi Komîsiyona Mafê Mirovan ya Neteweyên Yekbûyî re hene. Her weha li dema civînên Civata Giştî ya Neteweyên Yekbûyî, an civînên dezgehên din yên girêdayî bi rêxistinê ve, UNPO alîkariya endamên xwe dike ku deriyên danîna têkiliyan bi dezgehên cîhanî re vekin.

**Gelo PDK Îranê weke nûnerê kurdên Kurdistana Îranê û rêxistinên kurdî yên endam di vê rêxistinê de dikarin firaksiyoneke kurdî ya hevdeng û yekgirtî bo pêşvebirina pirsa Kurd di UNPO’ê de ava bikin?**

Hem PDKÎ û partiyên din yên Kurd (PDK û YNK) û hem jî Hizib bi endamên din yên rêxistinê re dikarin hevbendî û hevkariyek xurt bikin. Lê xebata UNPO’ê li ser bingeha karê Firaksonên berdewam nehatiye damezirandin. Li gor dîtina min, em wekî Kurd pêwîst e di mijara nasname û berjewendiyên neteweyî de li hemû dezgeh û saziyên cîhanî de bi yek dengî biaxivin, lewma yekem hevbendiya me di wê çarçoveyê de bi hêzên Kurdistanî re ye. Lê di mijarên siyasî û yên girêdayî bi qedera welatê ku em lê dijîn, divêt em bi gel û rêxistinên wan welatan re kar bikin. Ji ber wê yekê, hevkarî û dialoga sîstematîk bi gelên Belûç, Ereb û Azarbaycanî jî dê di bernameya karê me de be.

**Gelo endametiya di vê rêxistinê de dikare li pêşerojê de bibe bi berpirsiyar û garantiyek heya ku çi din zulm û xedir ji kurdan nehê kirinê, yan dikare kurdan ji her terze êrîşekê biparêze?**

Di cîhana siyasetê de, aktorên xwedî bandor berî ku girêdayî pîvanên îdealîstî û yên exlaqî bin, berjewendiyên siyasî, aborî, leşkerî û stratêjîk yên xwe diparêzin. Îro dema siloganên kilasîkî yên çep nine ku bandora ”îdeolojî”yê di edalet û rizgariya gelan de rola sereke dilîstin. Realîzma siyasî pêwîstî bi hevbendî, harmonî (li hevhatinan), hevkarî û hevgaviyê heye. Di demên kirîtîk yên veguhestinê de dema pilanên te amade nebin, tu hêz nikarin garantiya parastina te bikin.

Ji ber wê hindê, tevgera me pêwîstiyek herî lezgîn û acil bi pêdaçûnek rexnegirane ji rewşa xwe heye. Di asta cîhanî de ewa ne giring e ka kî serokatiya kîjan partiyê dike, kîjan partî xwediyê çi mîrasekê ye û kîjan kesayetî çi dîtinek îdealîst li ser kîjan mijarê heye. Her aliyê ku şiyana bi tevgerkirina xelkê hebe û berjewendiyên gelê xwe li ser bingeha bi hevre girêdayîbûna berjewendiyên aktorên din bimeşîne, di siyaseta cîhanî de bi pêş dikeve. Garantiya parastina gelê Kurd li hember gefên muhtemel yên pêşerojê de, neku UNPO an her dewlet an aktorê xûrt ya cîhanî, lê di serî de hevdengî û yekîtiya me ya neteweyî ye. Li pey wê re hevalbendiyek jîr bi hemû alîgirên demokrasî, mafên mirovan û mafê diyarîkirina çarenivîsa gelan pêwîst e.

**Ji bo ku em deskevtên bêtir di vê rêxistinê de bidest bixin, divêt çi bikin?**

Hem ji bo parastina deskevtên heta îro bi dest ketine û hem jî ji bo pêngavên hêj mezintir di pêşerojê de, pêwîst e em hemû bi hevre zendan vedin û bi hevre pitir bixebitin. Armanca me ya herî mezin bidestxistina edalet û parastina mafê mirovan ji rêya azadiya Kurdistanê û demokratîzekirina sîstema siyasî ya Îranê ye. Ew erk li ser milê me teva ye û nabe em rê bidin ku dîtinên cihê reng, bera xebata me ji armancê ve ber bi emrazan ve bizivirîne. Garantiya xurtbûna me bi tenê Yekîtiya Neteweyî ye.

**Sipas ji bo bersivdayîna te.**

Gelek sipas bo wê derfetê. Di karê we de serkevtinê dixwazim.

# Ronkirinek Li Ser Buxtaneke Neheq Ya Ebdula Hesenzade Di Kovara Livînê De



Taqima Mela Hesen Restigar û yek ji wan Mela Ebdula Hesenzade, çi beriya veqetiyan ji PDK Îranê û çi piştî wê cudabûnê, bi awayên cur bi cur ketin çêkirina buxtanên nebicî û neheq û neselimandî, li dijî PDK Îranê û rêberiya wê ya hilbijartî.

Hewla herî nû ya Taqima Mela Hesen Restigar di vê derheqê de, hevpeyvîna Mela Ebdula Hesenzade tevî kovara “Livîn”, hejmara 49’an e ku dibêje: “Dibêjin di Nawçeya YNK’ê de 300 kes bi fermana Celal Talebanî û desîseya Ebdula Hesenzade hatine kuştin”.

Eva ecêb û balkêş e ku Mela Ebdula Hesenzade di vê buxtana destçêkirî de nabêje ku ew gotine ji kuderê hatiye kirinê û kîjan berpirsiyarek partiyê tiştek wiha aniye ziman û di kîjan belavoka partiyê de gotinek wisan reng vedaye!!!

Aderes nedayîna Mele Ebdula Hesenzade ji bo wan buxtanên ku xistine ser PDK Îranê û rêberiya wê, di cî de ne rastbûn û tevlihevbûna wê taqimê dide xuyakirinê û tevî wana hemûyan jî, nîşanek ji vê rastiyê ye ku Taqima navhatî, heta amade ne ji bo gunehbarkirina PDK Îrnê, tomet û buxtana ji xwe jî bixin.

Em wekî PDK Îranê, tevaya vê hevpeyvînê bi tevlihev dizanin û peyv bi peyva vê red dikin.

Cihê xwe de ye ku YNK’ê rêyê nede ku ew taqime, nemaze berdevkê wan, ji vê çendê zêdetir YNK û birêz Mam Celal Talebanî, Sekreterê wê partiyê bikin sîpera cudabûn û siyaseta xwe ya şaş û tevlihev.

**PDK Îranê**
**Bîroya Pêwendiyên Silmaniyê**
**Erfan Rehnimûn**
**04.03.2007**

# Ronkirina Sekretariya PDK Îranê, Derheq Hevpeyvîna Sekreterê Giştî Yê Partiyê Tevî Rojnameya “Le Monde”

Di van rojên dawiyê de hinek malperên Kurdî beşeke berevaj û tevlîhevkirî ya hevpeyvîna rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê di rojanmeya “Le Monde” belav kirine ku ji zimanê Sekreterê Giştî ve basa xebat û çalakiya PJAK – baskê Kurdistana Îranê ya PKK’ê – dike. Di vê basê de ji zimanê Sekreterê Giştî yê PDK Îranê tê gotin ku PDK Îranê vê rêxistinê mehkûm dike û dixwaze ji Kurdistana Îraqê were derêxistinê.

Di vê derheqê de hewce ye em careke din siyaseta limêjîn ya PDK Îranê ron bikin, ew jî ewa ye ku em çêkirina partiyan ji aliyê PKK’ê ve jî bo parçeyên cuda cuda yên Kurdistanê bi siyasetek rast û dirust nazanin.

Em li ser vê baweriyê ne ku Kurdên her yek ji parçeyên Kurdistanê çêtir dikarin li ser çarenivîsa xwe biryarê bidin û awayên gihîştin bi wan armancan diyarî bikin.

Lê derbarê vê basê jî nivîsa rojnameya “Le Monde”ê ku ji zimanê Sekreterê Partiyê ve dibêje: “Nabe PJAK di Kurdistana Îraqê de bimînin û ...”, ew gotin bi tevahî ne rast û destçêkirî û bê bingeh e. Ji ber ku bi kêfxweşî ve Kurdistana Îraqê hikûmeta xwe ya hilbijartî heye û berpirsiyarê parastina sînorên xwe ye û li gorî mesleheta xwe û çawaniya têkiliyên xwe rê û cih ji bo rêxistinên siyasî diyarî dike. PDK Îranê pêşniyara derêxistina tu rêxistinekê ji tixûbên Kurdistana Îraqê nake.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekretariya**
**11.03.2007**

# Îlankirina Tekoşîna Aşkera Ya PDK Îranê

**Diyar**
**Wergerandin: Şakir**



**Dr. Qasimlo, Mîtînga Mehabadê - 1979**

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê ku piştî hiloşîna Komara Kurdistanê bo dema 32 salan tekoşîna nepenî hebû. Aqibet di roja 11'ê Reşemeya sala 1357 (02.03.1979)'an di mîtîngeke dehan hezar kesî de li bajarê Mehabadê, tekoşîna aşkera ya xwe ragihand. Xelkê seranserê Kurdistanê bi hez û hogiriyek zaf bo roja diyarîkirî xwe gihîjandine bajarê Mehabadê û di civîna îlankirina tekoşîna aşkera ya partiyê de beşdarî kirin. Rojên beriya destpêkirina civînê, xelk deste deste digîhiştine bajarê Mehabadê û ji aliyê desteya pervekirina mêvanan ve bi ser malên bajêr de ku "Kax Cewanan" (Qesra Ciwanan) ya wî bajarî de niştecih bûn, piştî pêşwazîlêkirinê, dihatin parvekirinê. Di vê derheqê de xelkê dilsoz û xebatkar yê Mehabadê mêvandariyek baş ji mêvanan kirin.

Sibêdeya Roja 11'ê Reşemeyê (2'ê Adara 1979'an) civîneke dehan hezar kesî di yarîgeha wî bajarî de ku hejmarek zaf ji rojnamevanên navxweyî û biyanî tê de beşdar bûn, dest pê kir û piştî xwendina sirûda **Ey Reqîb** û rêveçûna taybet (rêje) ya hêza Pêşmerge, şehîdê nemir Dr. Qasimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê axivî û bername û tekoşîna aşkera ya partiyê ragehand ku naveroka vê bernamê pêkhatiye ji:

1. Xebat ji bo avakirina rejîmeke demokratîk di Îranê de.
2. Bidestveanîna mafê Otonomiyê bo hemû gelên Îranê di çarçoveya yek welat de û bidestveanîna mafê demokratîk bo hemû girûp û desteyên siyasî.
3. Berçavgirtina siyaseteke aborî ku berjewendiyên zehmetkêşan li berçav bigire û bingeha jiyana xelkê jorde bibe.
4. Jinavbirina ne xwendewariyê, jordebirin û xurtkirina çanda civakî ya xelkê di çarçoveya zimanê dayîkê ya gelên Îranê.
5. Pêşgirtina siyaseteke serbixwe û neteweyî li dijî Emperyalîzmê û piştevanî ji bizava rizgarîxwazî ya gelan.
6. Damezirandina pêwendiyan tevî hemû welatan li ser bingeha rêzgirtina hember hev û rêzgirin ji desthilata navxweyî û destvernedana di kar û barên hevdu de.

Xêncî wan şeş xalane, li ser vê rastiyê îsrar kir ku hêza Jandermerî û Şaredariyê ku di dema derbasbûyî de hêza tepeserker a xelkê bûn, nabe careke din bihê organîzekirinê, belku divêt erka parastin û ewlekariya Kurdistanê bi destê xortên gelê Kurd bê dan.

Di vê civînê de bû ku Dr. Qasimlo ragihand, her kes dijminê me nebe, em hesaba dostî li ser dikin û got nabe em hêzên xwe li dijî hev bikar bînin, belku divêt hevxebat bin û ji bo pêşvebirina armancên xwe hînî demokrasiyê bin.

Dr. Qasimlo di hevpeyvîneke de tevî Rojnameya "Etlaat" ya roja 16.12.1357 (07.03.1979)'an, yanî pênc roj piştî ragihandina tekoşîna aşkere ya partiyê di bersiva pirsekê de ku li ser mafê diyarîkirina çarenivîsê ji wî tê kirin, dibêje: "Em daxwaza dewleteke federal dikin û divêt hemû gelên Îranê mafê diyarîkirina çarenivîsa xwe hebe û ragihand, bê hebûna demokrasiya rasterast û avakirina dewleteke federal di welat de, mafê neteweyî yê gelê Kurd dabîn nabe.

Di bersiva pirseke din ku jê tê pirsînê, gelo tu bêjî otonomiya daxwazkirî nebe sebebê cudabûna Îranê? Dr. Qasimlo dibêje:

"Ez berevajî gotina we difikirin, pêkhatina otonomiyê û dana mafê neteweyî yê gelê Kurd yekîtiya rasteqîne ya gelên Îranê xurt û qahîmtir dike".

Eva beşek ji wan dîtin û nêrînan in ku li 11'ê Reşemeya sala 1357'an, di destpêka ragihandina xebata aşkere ya partiyê hatibûn îlankirinê.

Dr. Qasimlo di hevpeyvîn tevî Rojnameya Îtilaat, bervara 07.03.1979:

**"Em daxwaza dewleteke federal dikin û divêt hemû gelên Îranê mafê diyarîkirina çarenivîsa xwe hebe û ragihand, bê hebûna demokrasiya rasterast û avakirina dewleteke federal di welat de, mafê neteweyî yê gelê Kurd dabîn nabe"**

Rejîma kevneperest ya Komara Îslamî di dema van 28 salên borî de li ciyê gavavêtin bo dabînkirina mafê neteweyî yê gelên Îranê û çareserkirina doza Kurd di rêya aştîxwazane de ku partiya me xebateke zaf di vê rêyê de kiriye û çend car bo bas li ser doza Kurd tevî berpirsên taze bi desthilatgihîştî çûye Tehranê, bo mînak di roja 04.04.1358 (25'ê Nîsana 1979'an) şandeke payebilind ya Partiya Demokrat bi rêberiya Dr. Qasimlo çû cem Xomeynî û xwastên gelê Kurd tevî navhatî xistne ber basê. Lê Xomeynî di bersiv de basa parastina "Wehdetê Kelême (hevdengî)" yê kiribû û gotibû ez hêvî dikim, di pêşerojê de me mafê wekhev hebe.

Biîsrarbûna Partiya Demokrat li ser çareserkirina doza Kurd ji rêya aştîxwazane ve kar gihîjande ciyekê ku kevneperestan bi lêban û hêceta çareserkirina doza Kurd li Kurdistana Îranê ji rêya aştiyê ve, Dr. Qasimlo kişande Viyenê û li ser maseya gotûbêjê şehîd kir û piştî wî jî, Dr. Seîd Şerefkendî teror kirin. Rejîma kevneperest û totalîter ya Komara Îslamî li ser vê baweriyê bû ku bi kuştina Dr. Qasimlo û Dr. Seîd û hevalên wan dikarin Partiya Demokrat Lawaz û bêhêz bikin û ji nav bibin.

Piştre jî bi domandina siyaseta tepeserkirin, zext û givaş û darêtina kompiloyên cur bi cur bi armancên xwe negihîşt. Piştî 28 sal ji hatine ser kar ya rejîmê û ragihandina tekoşîna aşkera ya partiyê, em dibînin ku daxwazên wî serdemî her li ser ciyê xwe ne û heya niha jî tevî şehîd bûna hezaran kes ji Pêşmergeyan û dehan hezar kes ji xelkê sivîl û bêguneh yê Kurdistanê di vê pêxemê de, ev armanc bicî nehatine û xebat ji bo gihîştin bi van armancan herwisa di şêwazên cur bi cur de didome.

Piştî wî heyamê, niha pêşeroja xebata gelê Kurd ji hemû aliyekê ve rohn û roj bi roj hêvî bi serkevtinê di nava civatên xelkê Kurdistanê de xurt û bihêztir dibe.

Li hundirê welat de jî, ji aliyekê xortên gelê Kurd û ciwanên xwedî hest gelek baş bi maf û azadiyên xwe agehdar in û ji bo bidestveanîna maf û azadiyên xwe amadeyî her cure fîdakarî û xwegorîkirinekê ne û ji alîyekî din ve, rejîma kevneperest roj bi roj di civaka Îranê bêpar û nesîb dibe û kirîz û qeyranên cur bi cur ser heya pêyê rejîmê girtiye û heke em nebêjin hetine der ya rejîmê ne mimkin e, di vê em bibêjin pir dijwar e.

Di nav civaka navneteweyî de jî, xelkê Kurdistanê ji 28 salên borî zêdetir hatiye naskirinê û cewher û naveroka rejîmên dîktator û totalîter yên desthilatdarên Kurdistanê bo civaka navneteweyî rohn bûye û niha êdî di hemû cîhana pêşkevtî de Kurd wek neteweyekî aştîxwaz û demokrat ku xwedî axek dewlemend û nifûsek zaf ku heya niha jî bêdewlet tê mêzekirinê û ji daxwaziyên wan piştevanî tê kirin, niha êdî wek 28 salên berê nine ku tenê Parçeyên Kurdistanê piştevanê me bin, belku Kurdan gelek dost di cîhanê de peyda kirine ku piştevaniyê jê dikin û ji aliyeke din ve di beşek ji Kurdistanê de Kurd bi mafê xwe dilxweş bûye û xwediyê dewlet û desthilata xwe ye.

Dimîne eva ku em carek din li ser daxwazên demokratîk û rewa yên xwe ku anîna ser şola rejîmeke demokratîk û federal ku tê de mafê neteweyên Îranê bê misogerkirin, biîsrar bin û daxuyaniya cîhanî ya mafê mirovan wek bingeh bihê mêzekirin. Bidestveanîna vê armancê bi yekgirtina opozîsyona demokrat ya rejîmê cî bi cî dibe. Ceribînên derbasbûyî ji me re dibêje "Wehdeta Kalême" (hevdengî) yan hemû bi hevre bi bê diyarîkirina mekanîzmeke jêhat û di bername û pilatformeke demokratîk de li gorî van pîvanan ku me bas jê kir yanî anîna serkar ya rejîmeke demokratîk û federal ku tê de mafê gelên Îranê dabîn bike, mafê mirovan, demokrasî û sekolarîzm bingeha eslî ya rejîma pêşeroja Îranê be cî bi cî dibe.

# Nameyek Ji Bo Xayîn Û Xwefiroşên Neteweya Kurd

Heke em lênihêrînekê li dîroka xebata neteweya Kurd di van çend dehsalên dewîn de bikin, ji me re derdikeve ku bi dirêjahiya dîroka vê xebata mafxwazane, tim xebat û tekoşîna gelê me bi mifahstandin ji alavên wekî ol, meseb, tayfe û eşîreçîtiyê, bi şikestê re berbirû kirine. Ger **Melayê Xetî** bi dana fetwa û heramkirina şer bi Osmaniyan re şoreşa Mîr Mihemed Rewandizî rastî têkçûnê kir, ger komara sava û canemerg ya Kurdistanê bi îxanet û xwefirotina hin serok eşîre û serok qewman hate herifandinê, tu car xortên bi emeg yên gelê me dest ji xebat bo azadî û serbestiyê hilnegirtin û mezarê pîroz yê Serok Komarê Kurdistanê



(Pêşewa Qazî Mihemed) kirine sembol û nîşana xebat û berxwedaniyê.

Îro rojê bi milyon kes ji evladên Pêşewayê nemir, li her çar aliyên Kurdistana parparkirî bo bidestveanîna armancên pîroz yên rêberê mezin rabûne û xebatê dikin. Lewra bo gihîştin bi vê armanca pîroz û mezin, hişyarî û agahiyên dîrokî ji bav û kalên me û şîret wergirtin ji têkçûn û serketinên jiyana xebat û şoreşên wan gelek hewce ye. Di demekê de ku xortên netirs û şoreşvan ên gelê me di parek ji Kurdistanê de heya qasekê bi maf û azadiyên xwe gihîştine, di demekê de ku nasiyonalîzma neteweyî, hesta welatparêzî û hişyariya ciwanên Kurd çilû daye, di demekê de ku her roj bi dehan lawên Kurd bi destê kirêgirtiyên rejîmê, di girtîgehên sedsalên navîn de bi egera êş û îşkence û ... tên şehîdkirinê. Nameyek tejî ji şerm û îxanetê ji aliyê girûpek binav serok eşîretan di nava xelkê Urmiyê û deverên vê de belav kirine û wan kesane bi bêşermiyek zaf ve piştevaniya xwe ji Komara Îslamî ya Îranê û rejîma sûndxwarî ya neteweya Kurd, rejîma ku rêberê vê anku Xomeynî li sala 1358'ê Rojî de li dijî xelkê Kurdistanê fermana cîhadê da û can, mal û namûsa gelê Kurd bi helal hesiband, amadebûna xwe ji bo hevkarî û xweşxizmetiyê bi rejîmek wiha re dayne eyanê!? Em bawer in ew binav serok eşîretên xayîn û xwefiroş ji bîr kirine ku ciwanên Kurd bona parastina bihost bi bihost ya xaka Kurdistanê xwîn dane û didin û li bin her raze berekê, di bin sîbera her darekê de, li ser kopika çiyayên Kurdistanê ji Makûyê ve heta Îlamê, ji Îlamê heta Kerkûka dilê Kurdistanê û Diyarbekirê goristana gelê Kurd e ku ji bo azadî û serbestiya vê av û xakê canê xwe gorî kirine, her ji ber vê nîştimanê ye ku bi hezaran zarokên sêvî bê bab û bêkes mane, bi hezaran dayîkên Pêşmergeyan ku keç û xortên xwe pêşkêşî bargeha azadî, serbestî û mafxwaziyê kirine, niha reşpûş û ji halê reşikê de ne û şev û roj bo azadiya axa xwe ku keç û xortên xwe jêre gorî kirine, rondikan dibarînin.

Niha serbarê hemû evane girûpeke îxanetkar bi gel û welat ku ne nûnerê xelkê ne û ne jî serok eşîret in, hatine û dixwazin bona wergirtina pile û berpirsiyariyan wiha nîşan bidin ku dem her dema eşîregiriyê ye û îxanet û xwefirotina xwe bavêjin stûyê eşîreta xwe!!!.

Lê wiha dixuye ku wan xwefiroşan ji bîr kirine ku niha sedsala 21'an e û dema eşîregirî, beg û axatiyê bi ser çûye û gelê Kurd bi xasmanî nifşa ciwan tiştek bi navê eşîregiriyê bi fermî nas nake. Take tişta ku neteweya Kurd wê nas dike û ciwanên gelê me amade ne jêre xwînê bidin, azadî û serbestiya nîştimana Kurdan e neku eşîregirî û hev eşîrebûn.

Ya ku di nameya van îxanetkaran de cihê baldan û heyirmanê ye, eva ye ku: Ew îxanetê bi av û axekê dikin ku têde mezin bûne û têde dijîn, eva mirov ecêbgirtî dike!!?

Çimku ev nîştimane cihê li dayîkbûna mezintirîn rêberên Kurd e, rêberên wekî: Xanê Dim Dim (Lepzêrîn), Simkoyê Şikak, Şêx Obeydula Nehrî û Dr. Ebdulrehman Qasimlo ye. Bêguman tu car lawên Kurd di van deverên Kurdistanê de, yanî Makû, Xoy, Selmas û Urmiyê de izna îxanetek wiha bi van îxanetkaran nadin.

Di çaxekê de ku rejîma dijî mirovî ya Komara Îslamî bêhn û henaseyên dawîn yên jiyê reş a xwe dikêşîne, ew kes li halê îxanetkirina bi neteweya xwe ne! Li hizra vê de nin in ku di sibehiya azadiyê de dê bikevine ber dadgehîkirina xortên neteweya xwe û navê bişerm û reş yê wan bo hertim dê bi kirsdanek û zibildana dîrokê re bihê spartinê.

Hema tu dibêjî wan îxanetkaran ji bîr kirine ku neteweya Kurd piştî avakirina Komara Kurdistanê de, eva 61 sal in ku serdemê eşîregeriyê derbas kirine û niha xebatê bo armancên neteweyî dike ne eşîregeriyê. Wiha dixuye ku wan îxanetkar û kirêgirtiyan ji bîr kiribin ku xelkê her çar parçên Kurdistanê di sala 1377 (1998)'an de bona nerazîbûna li hember girtina Ebdula Ocalan daketine ser şeqaman û aliyê kêm 100 şehîd dan, her li vî bajarî anku Urmiyê de 7 kes ji xortên gelê me hatin şehîdkirinê. Ew bona Kurdbûn û hesta welatparêziyê bû, ne eşîreçîtiyê.

Niha jî serbarê wan hemû cangorîtî û berxwedana gelê me, roj nine ku xwîna ciwanek yan çend ciwanên neteweya me ji aliyê rejîma Melayan li Îranê de nehê rijandinê, bêşik gelê me û heta eşîretên wê jî ji îxanet û xwefiroşiyên van kirêgirtiyane xweş nabin û rê bi îxanetên wan nadin û ew tu car nikarin xwe bi nûner û serok eşîretên tu eşîretekê bizanibin, xelkê hişyar û zana jî tu demekê xwefiroşên av û xaka xwe bi nûnerên xwe nizanin. Herwiha nifşa nû û ciwan jî bi xasmanî ciwanên Makû, Xoy, Selmas û Urmiyê bi tu awayekê wan bi nûnerê xwe nizanin û qebûl jî nakin ku carek din destê wan bi xwîna xortên Kurd sor bibe.

**Komek ji ciwanên dirêjederê rêbaza Dr. Qasimlo**

***Wergerandin: Rondik***

Peyama Deftera Siyasî Ya PDK Îranê

# Bi Boneya Sêyemîn Salvegera Serhildana Xelkê Qamişloyê



***Hevalên rêzdar!***
***Nûnerên Partiyên Siyasî ên Kurdistanê!***
***Hevalên beşdar di rê û resma sêyemîn salvegera serhildana gelê Kurdistana Rojava!***
***Lijneya amadekar ya vê bibîranîna hêja û pîroz!***

Xebata dehan salî ya neteweya Kurd ji bo bidestveanîna azadî û mafên neteweyî, tevî serkut û qirkirina wê neteweyê ji aliyê dagirkerên Kurdistanê ve hevdem bûye û di vê derheqê de dijminên maf û azadiyên neteweya me ji tu kiryareke ne mirovane bi merema serkut, qirkirin û asîmîlasyona kulturî û ji holê rakirina nasnameya neteweyî ya Kurdan xwe ne parastine.

Di vê derheqê de gelê Rojavayê Kurdistanê bi awayekî sîstematîk dehan sal e ketiye ber siyaseta ne mirovane û nejadperestane, bişaftin û asîmîlasyona kulturî, lê ewa ku ji bo her Kurdek welatparêz cihê rûmet û şanaziyê ye, ew rastiya ne înkarkirî ye ku gelê Rojavayê Kurdistanê ne tenê her ne heliyaye, belkî bêtir ji caran maf û azadiyên xwe nas kiriye û serhildana mezin û berfireh ya bajarê bizav û serhildanê – Qamişloya serbilind – selimand ku neteweya me di vê beşa Kurdistanê de ne tenê her zindî û çalak e, belkî ji bo bidestveanîna maf û azadiyên neteweya me li Rojavayê Kurdistanê de bêrawestiyan dixebite.

Em li vir kom bûne ku yek ji rojên dîrokî yên tevgera rizgarîxwaz ya neteweya Kurd bibîr bînin. Serhildana 6 rojî ya sala 2004'an û fîdakarî û xwegorîkirina xortên neteweya Kurd li bajarê Qamişloyê li hember desthilata tepeserkar ya rejîma dîktator ya Bees a Sûriyê bibîr bînin û silavên wefadarî û emekdariyê ji bo canê paqij yê şehîdên serhildana 12' Adara 2004'an a bajarê Qamişloyê bişînin û li hember hesta welatparêziya wan de serê rêz û hurmetê ditewînin.

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê tevî mezinnirxandina vê serhildana gelî û armancên wê yên neteweyî, careke din li xebat û tekoşîna xortên Kurd di hemû parçeyên Kurdistanê de û nemaze xortên welatparêz yên Kurd li Sûriyê di rêya bidestveanîna mafên siyasî û neteweyî yên wan piştgiriyê dike û xebata wan bilind dinirxîne û şanazî û rûmetê pê dike û li ser têkiliyên dostane û biratiyê tevî hemû partiyên siyasî ên Kurdên Sûriyê jî tekezê dike û ji bo berfirehkirina wan pêwendiyane jî amadeyê hevkarî û hevxebatiyê ye.

Bi rêz be bibîranîna serhildana 12'ê Adara 2004'an ya Qamişloyê

Serbilindî ji bo Şehîdên Kurdistanê

Serekve xebata berheq ya gelê me di pêxema demokrasî û mafê neteweyî de mirin û neman ji bo neyar û dijminên Kurd û Kurdistanê

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**

Her bi boneya sêyemîn salvegera serhildana Qamişloyê de, du şandên PDK Îranê li Hewlêr û Silêmaniyê beşdarî rê û resmên taybet bi vê boneyê bûn. Hûn dikarin raporên li vê derheqê de li ser malpera me bixwînin.

**Ronkirinek Ji Sekretariya PDK Îranê:**

# Siyaseta Şerfirotinê Bi Armanca Xwe Nasandinê, Îflasa Siyasî Ye



Taqima Mela Hesen Restigar, piştî îlankirina cudabûna xwe ji Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, li ciyê tekoşîn û darêtina bernameya nû! Li dijî Komara Îslamî, bi armanca nasandina xwe bi civatên xelkê Kurdistanê, rêya şerfirotinê bi Pêşmergeyên PDK Îranê hilbijartiye.

Kesên ser bi aliyê vê taqimê li gorî wê siyasetê, careke din di rojên în û şemî, (02 û 3’ê Adara 2007)’an li binkeyên partiyê li Dêgele û Cêjnîkanê li pey mihanegirtin û heta guleavêtinê bi ser Pêşmergeyan de, wekî vê yekê ku derfetek zêrîn ji wan re pêk hatibe, careke din li ser ragihandinên giştî de dest bi hawar û xwe belengaz nîşandanê kir û bazara xwe pê germ û gur kirine.

Hewce ye bihê gotinê ku zêdetir ji du meh in ji bo dûrxistina cihê niştecihbûna malbatan û cihê karê wan ji PDK Îranê, ji aliyê nûnerên Hikûmeta Herêmê ve cih ji wan re hatiye diyarîkirinê, lê hemû rojekê bi mihane û hêcetekê dûrketinê derng dixin û heta niha jî ji bo bicîhêlana cihên xwe razî nebûne, eva jî ji ber vê çendê ye ku ew dizanin dûrketina wan ji meydana şerfirotinê di encamê de propagendeya wan dê berteng bike.

Em xelkê Kurdistanê piştrast dikin ku PDK Îranê bi seh bi hebûna berpirsiyariya tewaw dê bi vê pirsê re tevbigere û heke heya niha bersiva şerfiroşên vê taqimê bidaya, renge bûyerên ne çavnihêrkirî lê çê biba.

Ji bo berlêgirtin ji wan cure bûyeran û nehêlana mihaneyan di destê taqima Mela Hesen Restigar de, em daxwazê dikin Hikûmeta Herêmê micidtir û berpirsanetir ji bo dûrxistina vê girûpê gavan bavêje û bixebite.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Sekretariya**
**05.03.2007**
**14.12.1385**

## Peyama Binkeya Nûneriya PDK Îranê Li Hewlêrê, Bi Hinceta Sêyemîn Salvegera Serhildana Qamişloyê



Ji bo tevgera siyasî ya Kurd li Rojavayê Kurdistanê
Tevî rêz û silavan
Bi boneya sêyemîn salvegera serhildana Kurdistana Rojava û bi taybet bajarê kurdperwer yê Qamişloyê, em serê rêz û hurmeta xwe li hember Şehîdên wê serhildanê ditewînin. Bo careke din em piştgiriya xwe ji gelê Kurd yê bira li Rojavayê Kurdistanê didin xuyakirinê û em xwe bi hevxebat û hevsozê we diznain.

Hezaran silav ji canê paqij yê şehîdên tev neteweya Kurd bi giştî û bi taybet Şehîdên serhildana Kurdistan Rojava.
Hezar silav li tevgera rizgarîxwaz ya Kurd li Rojavayê Kurdistanê

**PDK Îranê - Nûneriya Hewlêrê**
**Rostem Cehangîrî**
**12.03.2007**

# Gerek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

**01.03:** Roja Cîhanî ya Mamostayên Xwendingehan.

**01.03.1979: Mela Mistefa Barzanî** di yek ji nexweşxaneyên Amerîkayê de koça dawiyê kir. Ew yek ji rêberên navdar yê tevgera Kurd bû ku piraniya dema jiyana xwe di rêya doza Kurd de derbas kir.

**02.03.1979:** Birêveçûna mîtînga mezin a 100 hezar kesî ya PDK Îranê li Mehabadê ku Dr. Qasimlo têde axivî. Herwiha destpêkirina xebata aşkira ya PDK Îranê bû.

**03.03.1924:** Hilweşandina Mîrnişînên Kurdan ji aliyê Komara Turkiyê ve û hemû mekteb, belavok û tekiye û komeleyên Kurdî hatne qedexekirinê.

**03.03.1946:** Piştî dawî pêhatina şerê duyemîn yê cîhanê, leşkerê Birîtaniya axa Îranê bi cî hêla.

**04.03.1923:** Di demekê de ku xelkê bajarê Silêmaniyê li hember hêzên Birîtaniyayê nerazîbûna xwe eyan kirin, balafirên şerker yên Îngilîstanê bajarê Silêmaniyê bi tundî bombebaran kirin.

**04.03.1984:** Sitûnek hêzên rejîma Komara Îslamî li devera Şamat ya Mehabadê kete nava boseya Pêşmergeyên PDK Îranê li Hêzên **Pêşewa** û **Beyan,** pitir ji 130 kes hatne kuştin û dehan otombêl ji kar ketin û gelek destkevt ketin destê Pêşmergeyan. Mixabin 6 Pêşmerge bi navên **Mihemed Îbrahîmof**, **Mihemed Îsale**, **Elî Qerenî**, **Simayîl Ezîzpûr**, **Fetah Xorşîdî** û **Xalid Xiziraxayî** şehîd bûn.

**05.03.1967: Dr. Mihemed Musediq** di temenê 85 saliyê de li gundê Ehmedabadê koça dawiyê kir.

**05.03.1991:** Li bajarê Raniyê ya Kurdistana Îraqê serhildana gelê Kurd dest pê kir. Çend rojan nekişand ku yek li pey yekê bajarên Kurdistanê ji destê hikûmeta dîktator ya Beesê azad bûn.

**06.03.1975:** Li derheq parastina tixûban û li dijî Kurdan di navbera Îran û Îraqê de lihevhatina Elcezayirê hate îmzakirinê. Sedam axa Îraqê da Îranê heta ku Îran alîkariyê bi Barzaniyan re neke. Ew lihevhatin bi li hevkirina qirêj ya Elcezayirê hatiye naskirinê.

**07.03.1951:** Serok Wezîrê Îranê **Rezmara** hate kuştinê.

**07.03.1991:** Li doma serhildana gelê Kurd li Kurdistana Îraqê, bajarê Silamaniyê ji desthilata rejîma Beesê hate paqijkirinê û rizgar bû.

**08.03:** Roja Cîhanî ya Jinan.

**09.03.1989:** Hunermendê mezin yê gelê Kurd, **Mihemed Şêxo** xelkê bajarê Qamişloyê koça dawiyê kir.

**09.03.2006:** Dosya navikî ya Îranê li Ajansa Vejena Etomê ya Navneteweyî ji bo Konseya Ewlekarî ya Rêxistina Neteweyên Hevgirtî hate hinartinê.

**11.03.1970:** Derçûna daxuyaniya otonomiyê ji aliyê hikûmeta Îraqê bi gelê Kurd li Kurdistana Îraqê.

**11.03.1984:** Hêzên rejîma Komara Îslamî êrîş kirin ser devera **Mîrqaz û Sarim**. Di şerekî giran tevî Pêşmergeyên PDK Îranê de, pitir ji 50 kes ji hêzên dijî gelî hatin kuştinê, di wî şerî de 5 Pêşmerge bi navên **Xidir Xidirpûr**, **Xefûr Îbrahîmî**, **Îbrahîm Mehmûdniya**, **Ebdula Ferecî** û **Cevad Xizrî** şehîd bûn.

**11.03.1995:** Piştî 27 salan man di girtîgehê de **Nelson Mandela**, Serokê Afrîqayî di girtîxaneya Başûra Amerîkayê de serbest hate berdanê.

**12.03.2004:** Di encama alozî û şerê di navbera Kurd û Ereban li meydana Futbolê de li bajarê Qamişloyê, pitir ji 30 kes ji xortên Kurdan bi destê Ereban û hêzên tepeserker yên dewleta Sûriyê hatin şehîdkirinê. Ev yeka jî bû sedema nerazîbûna tevaya Kurdan di seranserî cîhanê de.

**13.03.1993:** 6 balafirên rejîma Îranê binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê li gundê **Bolê** bombebaran kirin ku di encam de 4 kes şehîd û çend kes jî birîndar bûn.

**14.03.1993:** Bombebarana Nexweşxaneya **Azadî**’yê û mal û zeviyên xelkê derdorê ji aliyê rejîma Komara Îslamî ya Îranê ve.

**15.03.1946:** Damezirandina Yekîtiya Jiyên Demokrat ya Kurdistana Îranê li bajarê Mehabadê de.

**15.03.1996:** Derçûna hikmê girtina Elî Felahiyan, Wezîrê Ewlekarî û Îstixbarata wî çaxî ya rejîma Komara Îslamî ya Îranê ji aliyê Polîsê Navneteweyî (Enterpol) ve bi sûça destêde hebûna wî di terorkirina **Dr. Sadiq Şerefkendî** û hevalên wî de.

# Lênihêrînek Li Ser Dîroka 8'ê Marsê, Roja Cîhanî Ya Jinan

**Çinûr Qadirî**

Roja 8'ê Adarê rojekî dîrokî ye, roja hildana ala xebatê li dijî zulm, tund û tûjî û cudahîdanan li dijî jinan e.

Hilbijartina 8'ê Meha Adarê wekî Roja Cîhanî ya Jinan, bi boneya meşa mezin ya jinên kedkar ên karxaneya ristin û dirûnê ya bajarê "New York" ya Amerîkayê bi armanca zêdekirina miaş û kêmkirina dema kar, di sala 1857'an de bû ku polîs êrîş kire ser wan û piraniya ew jinên ku beşdariya vê meşê bibûn, hatin girtin û binçavkirinê û hejmarek berçav ji wan hatin kuştinê û birîndar bûn.


Kilara Zîtkîn

Xebata jinên ristin û dirûnê ya Amerîkayê bû bi rojekî girîng û dîrokî a xebata mafxwazane ya jinan bi giştî û nemaze jinên azadîxwaz yên Amerîkayê. Meş û derbirîna nerazîbûna jinên kedkar yên ristin û dirûnê, li dijî mehane, heqdestê newekhev, rewşa nebaş û xirab ya kar û zafbûna çax û dema kar bû. Daxwazên wan jordebirina miaş û kêmkirina dema kar ji bo 10 seet di rojê de, mafê danîna yekîtiya kedkaran û herwiha mafê dengdanê bû.

Klara Zîtkîn (CLARA ZETKIN) yek ji rêberên navdar yên Partiya Sosyalîst ya Almaniyayê bû ku di wê konferansê de ya ku di meha Tebaxa 1910'an de li bajarê Kopenhagê hatibû lidarxistinê û nûnerên Yekîtiya Kedkarî û Partiyên Sosyalîst têde beşdar bûn, weke amadekar û rêbera vê konferansê pêşniyara vê çendê kir ku 8'ê Marsê wekî Roja Cîhanî ya Jinan bihê diyarîkirin. Bo vê armancê bona pejirandina vê rojê wekî Roja Jinê, pêşniyarbiryara xwe pêşkêşî konferansa han kir.

Di Pêşniyarbiryara Klara Zetkîn de, çar daxwaziyên pir girîng ketibûn berbasê: 1. xebat ji bo mafê dengdanê, 2. Xebat li dijî xeter û tirsa şer, 3. Xebat ji bo bidestveanîna mafê dayîk û zarokan û 4. Xebat li dijî giraniyê û cudahîdanan.

Di konferansa sala 1910'an de, serbarê bi girîngzanîna Roja Cîhanî ya Jinan, li ser diyarîkirina rojek taybet negihîştin encamê. Lewra heta sala 1912'an, her welatekê li rojekî taybet ya cuda li welatên din, lê di meha Adarê û bêtir li rojên bêhnvedanê a wan welatan de, rê û resmek wekî roja jinan lidar dixistin. Bo mînak di sala 1914'an de, li seranserê Ewropayê de, meşek mezin û berfireh li dijî şer ji aliyê jinan we hate meşandinê ku em dikaribin jinên pêşeng û debşikên ên birêvebirên 8'ê Adarê ya welatên Danîmark, Almaniya û Swîsrayê nav bibin. Herwiha di sala 1917'an de li Rûsyayê jî jinan di yekşemeya dawî ya meha Şibatê, ji bo **nan û aştiyê** girev lidar xistin. Rêberên siyasî ên vê demê karê han baş nehesibandin, lê jinan dest ji girevgirtinê ber nedan û piştî 4 rojan dewleta Tezarî neçar ma ku dest ji desthilatê berde û li kar nemînin û biçe qiraxê.

Di sala 1921'an de, Klara Zetkîn vê carê ji rêberên Enternasiyonala Sosyalîst bû û di serokatiya vê konferansê de cih girtibû, bo careke din 8'ê Adarê wekî Rojan Cîhanî ya Jinan pêşniyar kir û bû bi sebeba sereke ya pejirandina vê rojê wekî Roja Cîhanî ya Jinan.

Roja 8'ê Adarê bi du sedeman wekî Roja Cîhanî ya Jinan hate hilbijartinê, ya yekem eva bû ku 8'ê Adarê me tîne bîra xebata jinên leheng yên karxaneya ristin û dirûnê ya Niyoyorkê û ya duyem jî eva bû ku 8'ê Adarê roja serhildana jinên kedkar ên bajarê Sen Peterzbûrgê li dijî hikûmeta Rûsyeya Tezarî bû. Ji vê rojê şûn de heya niha 8'ê Adarê wek Roja Cîhanî ya Jinan hatiye binavkirinê.

Serbarê vê çendê ku li piraniya welatan de lidarxistina vê rojê qedexe ye, lê jin wê rojê wekî boneyeke navneteweyî ya taybet ji bo jinan dimeşînin û li piraniya welatan bi darxistina meş, pêkanîna konferans, semînar û ... bîrenîna vê rojê bilind û pîroz dikin.

Cara yekem li dewrana hikûmeta canemerg ya Komara Kurdistanê, yanî sala 1945'an li bajarê Mehabadê, cejna 8'ê Adarê birêve çû. Sala 1358 (1979)'an, yanî sala bidestvegirtina desthilatê ji aliyê rejîma Komara Îslamî ya Îranê, jinan bi nîşaneya xuyakirina nerazîbûnê li hember sepandina biryara li xwekirina destmal û çerşeva bi ser jinan de xwenîşandaneke berfireh lidarxistin.

Di Îrana bin desthilatdariya Komara Îslamî de, pîrozkirina roja 8'ê Adarê qedexe ye û di rojhejmara Îranê de ev roje wekî rojekî cîhanî û navneteweyî nehatiye danîn û ev roje ji aliyê vê hikûmetê ve bi fermî nehatiye naskirinê. Lê jinên parêzerên maf û azadiyan li Îranê, bi awayên cuda cuda rêz ji vê roja cîhanî digirin. Li Îranê jin ji bo birêvebirina roja 8'ê Adarê, rastî gelek arîşe û pirsgirêkan dibin û bi hêceta vê yekê ku di Îranê de tenê roja ji dayîkbûna "Fatima Zehra", keça Pêxemberê Îslamê, Hizretê Mihemed, wekî roja Jinan hatiye naskirinê, izn û rêya tu cure kar û çalakiyekê di vê rojê de ji jinan re nahê dayînê. Eva di halekê de ye ku gelek rojên din ên navneteweyî û cîhanî hene ku rejîm hekî bi awayên rûyeke jî be, pejirandiye, lê mixabin Roja Cîhanî ya Jinan wekî nexweşiyeke mirandinê û kulikeke kasterê tê mêzekirinê ku divêt di bingeh de ji holê rakin.

Li Îranê, ji bona nîşandana hevpêwendî tevî tevgera mafxwazane a jinên cîhanê, mil bi milê mêran alîgir û parêzerê wekhevî û mafê adilane, li piraniya bajaran, serbarê hebûna kosp û astengiyên zaf ji aliyê rejîmê ve bona pêkanîna civînên cur bi cur, dengê xwe têkelî hawar û daxwaziyên seranserî yên jinên cîhanê dikin, lê tev salekê ev çalakî û xebatên jinan di roja 8' Adarê bi êrîşa xurt û dijwar û hovane ya hêzên serkutker ên rejîma dijî gelî û dijî jin ya Komara Îslamî re berbirû dibin.

Di çaxê îro de ku bi serdemê cîhanîbûnê, teknolojî û têkiliyan hatiye naskirinê, tevgera jinên cîhanê ji bo bidestveanîna mafê wekhev tevî mêran di civakan de bi şeklê bizaveka xwedî nasnameya xwe ya taybet e. Pêla vê tevgera mafxwazane seranserê welatên cîhanê bi xwe ve girtiye.

Yek ji wan welatan Îran e, ku jinên vî welatî ji hemû mafên xwe ên mirovî û demokratîk hatine bêparkirinê û herdem ji jinê re wekî regezeke bindest hatiye temaşekirinê û ji hiqûq û azadiyên xwe ên rewa wekî mirovekê bêpar bûye. Lê di Îranê de jin li hember vê zulm û koletî û ferq û cudahîdanan rihet nerûniştine û ji bo bidestxistina mafên xwe li hember rejîma dîktator ya dijî azadiya gotin û ramanê û azadiya mirov û ragihandinê, xebata wan her dom kiriye. Pirsa jinê di cîhana îro û Îranê de rastiyek e ku nahê înkarkirinê, lê tenê rayedarên rejîma Komara Îslamî ya Îranê ne amade ne vê rastiyê bipejirînin.


Jinên Îranê serbarê astengiyên zaf, xebata xwe her didomînin

# Zêdebûna Berçav A Beşdariya Jinan Di Biyava Kar De



Serhejmariyên Rêxistina Cîhanî ya Kar dide xuyakirinê ku di sala 2006'an de pêka sala borî anku (2005)'an, beşdariya jinan di biyava kar û aboriyê de bi awayekî xurt ber bi zêdebûnê çûye, her çend ku ferq û cudahîdananên heqdestî, îmtiyaz û xwendinê weke xwe maye.

Ev rapore ku ji aliyê Rêxistina Cîhanî ya Kar hevdem tevî 8'ê Adarê Roja Cîhanî a Jinan hatiye weşandinê nîşan dide ku ji 2 milyar û 900 milyon kesên karker di cîhanê de, di sala 2006'an yek milyar û 200 milyon, kes jin in.

Rêxistina Cîhanî a Kar herwisa ragehand ku astê jinên bêkar û xwedî kar di rewşa ne wekhev li gor sala borî, di radeya herî bilind de ye û niha hejmara wan jinan 81, 800 000 kes e.

Jinên ku mijûlê karkirinê di rewşên ne wekhev de ne, karên xizmetkirinê û cotkariyê encam didin û di halekê de ku karên wan tevî karên mêran wekhev e, lê heqdestek kêmtir werdigirin û xwediyê îmkanat û îmtiyazên wekhev tevî mêran ninin.

Cewan Sumawiya, Seroka Giştî ya Rêxistina Navneteweyî a Kar, got: Herçend ku pêşkevtinên kêm bi dest hatine, lê niha jî di beşekê de ku divê em weke aboriya ne fermî bidin nasîn, çimku di serhejmariyan de nahê qeydkirinê, jin tevî rewşeke ne wekhev berbirû ne.

Wê tekez kir û anî ziman: "Ji bo bidestveanîna wekheviyeke kemilî, rêyeke dirêj û pir zehmet li hember me ye".

Di vê raporê de daxwaz ji saziyên nedewletî, bank, navendên malî û sermayedanînê hatiye kirinê ku rewşeke wilo pêk bînin da ku jin jî bikarin bibin xwediyê kar û tecaretê û bikarin zêdebarê dabînkirina bijîva jiyanê, bibine xwediyê heqdesteke baş.

Rapora Rêxistina Navneteweyî a Kar, herwisa nîşan dide ku asta jinên xwedî heqdest di 10 salên borî de ji %42,9 gihîştiye %47,9. Serhejmariya ku di sala 2004'an de ji aliyê Rêxistina Pêvajoya Kar ya Cîhanî hate weşandinê, pêşdîtin kiribû ku di 10 salên pêşîn de hejmra jinên karker di rewşa nebaş di gişt civaka jinên karker de bigihîje 60 ji sedê.

Rêxistina Navneteweyî a Kar jî di rapora xwe de ev yeke rast zanî ku heya niha jî rewşa nebaş ya jinan di warê kar de guhertineke zaf bi ser de pêk nehatiye û ev serhejmariya kêm û zêde heya niha jî di ciyê xwe de ye.

**Çavkanî: www.radiofarda.com**

# Li Kurdistana Îranê Rê Û Resma 8'ê Adarê, Rastî Êrîş Û Tund Û Tûjiyên Hêzên Rejîma Îslamî Ya Îranê Hatin

Çalakvanên tevgera jinan û parêzvanê mafê wekhev yê jin û mêran îsal jî zêdebarê hebûna rewşeke pir ji zext û givaş û tepeserkariyên hêzên rejîmê, heya ew ciyê ku karîbin di bajarên Kurdistanê de bi awayên cur bi cur, rê û resmên taybet bi Roja Jinên Cîhanê birêve birin û di çend bajaran de jî bi giştî pêşî ji pêkhatina her terze rê û resmekê hatiye girtin ku emê di jêr de raporekê li ser çawaniya birêveçûna wan rê û resman bixne ber çavên we xwendevanên hêja:

Roja Pêncşemê 7'ê Reşemeya îslam li "Navenda Xumêynî" ya bajarê Sine ketî di sêrêya Edeb de ku bi tevahî di bin zêrevaniya hêzên rejîmê de bû, rê û resmek hêja bi hinceta 8'ê Adarê, Roja Cîhanî ya Jinan birêve çû. Her bi vê hincetê di parka "Milet" de civînek ji aliyê çend kesayetiyên jin û mêr ên parêzvanên mafê jinan pêk hat. Beşdarên civînê bi gotina dirûşmên weke: "**8'ê Adarê Roja Jinên Cîhanê pîroz be**". "**Em zîndanîkirina jinan mehkûm dikin**", "**mafê binpêkirî yên jinan divêt were dan**" û ... nerazîbûna xwe li hember siyasetên tepeserkarane yên rejîma Îranê derheq jinan eyan kirin. Di dawiya civînê de daxuyaniyek hate xwandin û piştre hêzên rejîmê êrîş kirine ser kesên beşdar di rê û resmê de û ji hev belav kirin.

Pêka nûçeya Rêxistina Azadiya jinên Kurdistanê – Nîna, roja Pêncşem 08.03.2007'an, hejmarek ji çalakvanên sivîl yên bajarê Sine ku dixwastin ji sêrêya Edeb ve heya meydana "Îqbal", meşekê birêve bibin, ji aliyên hêzên tepeserker ên rejîmê ketne ber êrîşê û hejmarek ji wan hatin girtin û ber bi girtîgehê hatin şandin, kesên girtî navhatî ne ji: Peyman Nemetî, Jîna Muderis Gurcî, Wirya Motedîn, Aso Salih, Selah Zemanî, Îhsan Ehmedî û Elyas Kerîmî.

Her pêka nûçeyek din ku ji Navenda Nûçeyan a PDK Îranê gihîştiye destê me, roja çarşem 07.03.2007'an li hola Civata Wêjeyî a bajarê Mehabadê de, rê û resmek bi pişikdariya 62 kes ji nivîskar û helbestvanan birêve çû ku têde helbest û gotinên zanistî di vê derheqê de hatne xwandinê.

Herwiha li gor nûçegehanê Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê de, hêzên rejîmê li bajarên Seqiz û Serdeştê de pêşî ji birêveçûna rê û resmên taybet bi 8'ê Adarê girtine.

Pêka vê çavkaniyê, demjmêr 17'ê êvariya roja Pêncşem 08.03.2007'an hejmarek ji xelkê bajarê Seqizê ku di meydana "Helo" de li hev civiyabûn, ji aliyê hêzên rejîmê ve êrîş li ser van tê kirinê. Lewra beşdarên civînê bona eyankirina nerazîbûna xwe li hember têkdana birêvebirina rê û resmê, meşeke nerazîbûnê lidar xistin. Tê gotin li demijmêr 12'ê nîvroya hemen rojê de hejmarek ji xelkê Seqizê bi navên Mihemed Salihî, Necîbe Salihzade, Celal Huseynî û Mihemed Ebdîpûr hatin girtinê û piştî çend demjmêran serbest hatin berdan.

Li gor jêdera navhatî, li Serdeştê de jî di demên herî dawî de îzna birêveçûna vê rê û resma 8'ê Adarê ku ji bo rêxistineke ne dewletî bi navê **Tîrêj**'ê hatibû dan, hate betalkirinê.

# Dîsan Mamostayên Merîwanê Li Hember Îdareya Perwerdê Lihev Civiyan

Li gor agahiyên Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê, di doma nerazîbûna mamostayên Îranê de, roja pêncşem, 17.12.1385(08.03.2007)'an, mamostayên Merîwanê li hember deriyê Îdareya Perwerdeya bajar lihev civiyan.

Di civîna han de ku pitir ji 500 mamosta beşdar bûn, nerazîbûna xwe bi nivîsîna dirûşmên weke "Derdê me ne xizanî ye, danîna ferq û cudahiyê ye", "Mamosta dimirin, lê cudahîdananê na pejirînin" û ..., li ser derî û dîwarîn Îdareya Perwerdê, îlan kirin.

Hêzên ewlekarî û Întizamî yên rejîmê di heyamê kombûnê de bi tevahî rewş xistibûn bin çavdêriya xwe û hewl didan ciwanekê ku mijûlê girtina wêneyên civînê bû, bigirin ku girtina helwesta tund ji aliyê Mamostayan ve, nehêlan ew yek çê bibe.

Di dawiya civînê de daxuyaniyek hat xwendinê ku wiha hatibû:



Em weke komek zaf ji mamosta û çalakên çandî yên bajarê Merîwanê, bi nûneriya hevkarên xwe yên din û di pêrewiya armanca baldana berfirehtir a berpirsan bi karê perwerde û elimandinê û çêtirkirina rewşa jiyana mamosta û çalakên çandî, kom bûne û di vê derheqê de hevpêwendî û piştgiriya xwe ji mamosta û hevkarên xwe yên çalakên çandî li tev bajarê din û civînên nûnerên mamostayên seranserî welat li ber deriyê Parlemana Şewra Îslamî, îlan dikin.

Parek ji xwestekên mamostayan wiha di daxuyaniyê de hatibûn:

1- Pesendkirina yasayekê bo dana miaşê karmendên dewletê bi awayeke hevaheng.

2- Mafê damezradina navendekke sinfî ya mamosta û çalakên çandî.

3- Dana mafê dengdanê bi rêxistinên sinfî di Şêwra Bilind a Perwerdê de.

4- Ji holêrakirina dîtingeha "Organa xerc tê çûnê ye sîstema perwerdê", ji aliyê berpirsan ve.

5- Ji holêrakirina ferq û cudahiyên hindurîn û derveyî yên rêxistinan.

6- Rakirina rewş û hewayê ewlekariyê yê zal bi ser perwerdê de.

7- Cîbicîkirina esla 27'an ya Yasaya Bingehîn a Komara Îslamî ku îzna meşên nerazîbûnê yên bê çek û sîlah dide.

8- Lênihêrînek bi dosya mamostayên dûrxistî.

9- Rohnvekirina çarenivîs a mamostayên "Hequltedrîs"(Mamostayên ku li gor karê xwe li perwerdê de pere dstîna û ne fermî ne) yên li sîstema perwerdê de.

10- Damezrandina banka çalakên çandî

11- Dana pereyê xêzînê bi parêzgehan.

# JIN Û AZADÎ



**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Hefteya borî 8'ê Adarê ango Roja Jinên (Kedkarên) Cîhanê bû. Û ev roj li çar nikarin dinê bi kêf û coş û şanazî hate pîrozkirin. Bêguman Ev hewldan û pîrozbahiyên jidil hêjayî rûmetdayînê ne. Belê pirsgirêka jinê ya ku di hezaran sal de pêk hatiye, ne pêkan e ku di maweya çend salan de were çareserkirin. Bi vê egerê em dixwazin çend boçûnên xwe yên der barê pirsgirêka jinê de bi xwînerên xwe yên hêja re perve bikin.

Bi hezaran sal e ku nêrîn û nêzîkayîtêdanên nêrza(mêrîtiyê)wekî çarenivîseke neguherbar li ser mirovahiyê belê nemaze jî li ser jinê hatiye ferzkirin. Pergal û saziyên zoran û desthilatdar ên dîrokî hemû li ser hîmê vê ferasetê hatine rûnandin. Sazî û dezgehên dûgelên cîhanê yên îroyîn tev jî hê bi vê ferasetê têne birêvebirin.

Belê êdî jin, ne jina berê ye. Bi lebatî, li hember serdestî û kevneperestiya hezar salan radiweste û di nava rêxistin û komelên civakî yên şarwer(sivîl) de cih digire û tê dikoşe. Têkoşeriya jinê, cehd û hewldanên wê yên rûmetdar ji bo mirov û mirovahiyê şanaziyeke bêhempa ye. Lewre mirovahî azadiya xwe tenê dikare bi azadiya jinê bidest bixe. Û pey re jî serbilind û rûmetdar bibe.

Geşedaniya hişmendî û vînadriya jinê, qetandina qeyd û zincîrên zingarî û xelekên bindestî û koledariya mirovahiyê ye. Çewsan, pestan û zordestiyên ser serê mirovahiyê pêşî bi bindestkirina jinê dest pêk kiriye. Ji ber wê, ji bo ku mirovahî bikaribe azadiya xwe bidest bixe, divê pêşî li azadiya jinê bicehdîne. Ji pirsgirêkên mirovahiyê yên kevnar, qedîm û domandar yek jê belê ya herî giring pirsgirêka jinê ye. Ev pirsgirêka ku bi hezaran sal wekî girêka kor didome, ne diqete û ne jî ji ser hev vedibe. Belê gava ku dil û mêjiyê jinê bi vîneke azad û ramaneke têkoşer bête rapêçandin, dê zirx û cewşenên zordestiya hemû mêrên desthilatdar û pergalên paşverû yên zoran hin bi hin bêne felişandin. Bi felişandina ferasetên mêrza re jî, dê xelekên zordariyê bişikên û tevê pergalên desthilatdar yek bi yek birûxin.

Di dîroka mirovahiyê de -belê nemaze jî di domana civakên çîndar de- gelek nakokiyên lêkneker pêk hatine. Ev nakokiyên dijber û lêkneker car caran li pirsgirêkên nêçar û dijwar dageriyane. Gava ku mirov di dîroka civakên çîndar de bikole, teqez dê mirov di serî de li pirsgirêka jinê ya dijwar û nêçar biqeside. Çimkî rehên hemû pirsgirêkên mirovahiyê yên borî û îroyîn bi riknê pirsgirêka jinê ve girêdayî ne. Û tu pirsgirêk û nakokiyên civakî jî bê yî pirsgirêka jinê nikarin çareser bibin.

Pirsgirêkên mirovahiyê yên îroyîn wekî sê nakokiyên bingehîn ên domandar têne dîtin û kategorîzekirin. Yek; **pirsgirêka zayendî**, du; **pirsgirêka çînî**, sê; **pirsgirêka neteweyî** ye. Herdu pirsgirêkên dawî (pirsgirêka çînî û neteweyî) jî bi pirsgirêka jinê ve girêdayî ne. Û çareseriya wan jî dîsa girêdayî çareseriya pirsgirêka jinê ye. Heta ku nakokiya zayendî li aramî, aştî û azadiya mirovahiyê danegere, ne jin dikare wekî mirov bê dîtin û ne jî mêr.

Jixwe pirsgirêka herdu zayendan jî pev girêdayî ye. Ango ne tu mêrê azadîxwaz dikare pirsgirêka jinê, tenê bispêrê jinê û ne jî jina têkoşer dikare çareseriya pirsgirêka xwe tenê bide ser xwe. Divê her mirovê xwedî rûmet û wijdan, pêşî xwe ji bo hersê nakokî û pirsgirêkên mirovahiyê jî berpirsiyar peywirdar bihesibîne.

Her çend ku ji aliyê awa û taybetmendiyên xwe ve ji hev û din dûr bêne dîtin jî gelek nakokî û pirsgirêkên mirovahiyê dişibine hev. Bo nimûne; di navbera pirsgirêka jinê û pirsgirêkên din de (wekî pirsirêkên çînî, neteweyî, aborî û hwd.) dirûvtî û manendiyeke(hevşibîneke) pirr xurt heye. Gelek kesên ku xwe di her warî de wekî demokrat aştîxwaz û navneteweyîparêz dihesibînin, hene. Bi heman awayî gelek mêrên ku xwe azadixwaz, şoreşger û mafparêz dihesibînin, hene. Belê der barê pirsgirêka jinê de an bi awayekî mêrza( bi mêrîtî) tev digerin an jî çareseriya pirsgirêka jinê tenê dispirên jinê.

A rast, her çiqas ku di pirsgirêka jinê de rola diyarker a jinê be jî, ji ber ku pirsgirêk tevê mirovahiyê eleqedar dike, divê jin û mêr bi tevayî ji bo azdiya jinê têbikoşin. Heta ku pirsgirêka jinê çareser nebe, ne tu neteweyên dinê dikarin azad bibin û ne jî tu çînên civakî. Lewre pirsgirêkên mirovhiyê hemû pev girêdayî ne. Û hemû pirsgirêk jî tevê mirovahiyê têkildar dikin. Çi ji bo pirsgirêka jinê û çi jî ji bo pirsgirêkên mirovahiyê yên din dibin, pêdivî birêxistin, hişmendî û şêwirdariyên xurt heye.

Mirovahî bi windakirina jinê re ji pênas, zanav û nasnameya xwe bidûr ketiye. Îro, jin li nasnameya xwe ya zayendî xwedî derdikeve. Û ev yek nîşana xêrê ye. Azadiya mêrên bindest, koledar û her wiha têkçûna mêrê mêrza, zoran û desthilatdar di azadiya jinê re derbas dibe. Dixuye ku jin, dê hem xwe û hem jî mêrê reben û têkçûyî ji serberjêriya hezar salan reha bike. Belê bi piştgirî û hevkariya jin û mêrên çê û têkoşer.

Êdî baş tê zanîn ku azadiya mirovahiyê rasterê girêdayî azadiya jinê ye.

Pexşan

## Sefer Xweş Û Oxir Bi Xêr



**Serbest Urmiye**

Va dîsan di rê de ye bihar û xatir dixwaze zistanek din. Dema ku vedikirin gule Newroz û sorgulên hertim evîndar, hembêza xwe ji ber bilbila dilşewat û li benda tîrejên roja evînê de hemû sersibêdeyên tarî û ron, yar û dildar dixwînin hevdengê bilbilan, stirana evîndariyê, ez bibîriya te dikevim û rû bi çiyayên serkeşên Hacî Omeran bê hêvî û deng, hûrik hûrik hêsirên xerîbiyê bi ser rûmetê lorîkê dilşikestî de dibarînim. Bibîr tînim piştî nîvroya sar û seqema çileyê zistanê, dema ku hatibûm xatir ji te bixwazim û bi hêviya rojê cantê seferê min hilgirtibû. Dema ku bi çavê pir ji hêsin te got sefer xweş û oxir bixêr be. Hêdî hêdî ku dûr diketim û bi ser milên xwe de min mêzeyî çavên te dikir, çima neda te awirek çava, da belkî poşman kî min ji çûyînê? Tif ji av û ax û roj û felekê, di hembêza zistana sar û tezî de çiqas bi germî di hembêza xwe de girtin lorîk û dûr ji sînga dayîka dil biêş, bi hêviya derewîn a ronahiyê xapandin û ji çiya û tixûban vajî kirin. Niha ku bihar di rê de ye û dengê şalûl û bilbilan bêhna ax û nîştimanê tîne bîriya min, her çar kinaran sînor danîne û çember girêdane bi şîr û mertalan. Girêdane rê û rêgirên şevê yê di boseya karwan de rûniştine. Lûre lûra gurên birçî bi hizra xwarina lorîk, dem bi dem yê nêzîk dibe û dîtina rûmet û germiya hembêza te xêncî xewin û xeyalan qe ne tiştek din e. Bê hêvî û melûl, roj dibin êvar, serma şevê û tirsa mirinê, dihelîne can û herimandine xew li çavan.

Çare çiye? Ne bawer im ku di eniya min de hatibe nivîsîn anku qedera te de hatibe wiha, wî alê sînor di nav gul û gulistanê de tu bi hêsir û êş, vî alê çiya ez di seqema zistaneke xedar de bi hêviya awirek çava û germiya hembêza te ya birehim ne carkê, rojê bi hezar caran bimirim.

# LI ROJHILATÊ KURDISTANÊ ÇÎROK Û ROMANA KURDÎ

**Loqman Polat**

Weke Bakûrê Kurdistanê, li Rojhilatê Kurdistanê jî pirs û pirsgirêkên weşanên Kurdî û rojnamegeriya Kurdî hene.

Weşangerî û rojnamegeriya Kurdî di çi merheleyê de ye? Di çi rewşê de ye? Ev mijareke girîng e û divê nivîskar û rojnamevanên Kurd yên Rojhilat li ser vê mijarê lêgerîn û lêkolînê bikin, nivîs û pirtûkên ragihandinê, agahdariyê, nirxandinê û analîzê binivîsin û biweşînin.

Dema min pirtûka lêkolînvan Malmisanij ya li ser pirtûkên Kurdî yên li Bakûrê Kurdistanê û Başûrê biçuk ê Kurdistanê xwand, min ji xwe re got "xwezî lêkolînvanekî jî li ser pirtûkên Kurdî yên Başûr û Rojhilatê Kurdistanê jî pirtûkeke lêkolînê biweşandana û min bixwendana."

Di derheqê pirtûkên Kurdî yên Rojhilatê Kurdistanê, rewşa edebiyata Kurdî ya li wir û herweha rewşa weşanên – kovar û rojnameyên – Kurdên Rojhilat di çi radeyêde ye ez nizanim. Di dema Şah de Radyoya "Qasrê Şêrîn" û Radyoya "Kermanşahê" bi Kurdî weşan dikirin. Ew herdu radyo hêj jî weşana xwe didomînin yan na, ez nizanim. Niha li Îranê, li Rojhilatê Kurdistanê çend radyoyên Kurdî hene? Ji xeynê televîzyona "Sahar" televîzoneke din yan jî televîzyonên mehelî bi Kurdî weşan dikin yan na? Li Rojhilatê Kurdistanê û seranserê Îranê çend kovar û rojnameyên Kurdî hene? Çend kovar û rojnameyên Kurdî / Kurdan legal in û çend îlegal in? Çend pirtûkên Kurdî, çend pirtûkên helbest, çîrok û romanên Kurdî derketine? Çîrokbêj, helbestvan û romannivîserên navdar yên Rojhilatê Kurdistanê hene, kî ne?

Ez bi xwe bersîva van pirsên li jor nizanim. Di derbarê Rojhilatê Kurdistanê de pirtûkên ku min xwendiye çend lib in. Pirtûka li ser "Komara Mahabatê" ya nivîskarê Ewropî Wîllîam Agleton, pirtûkeka bîranînê ya Kerîm Hisamî û du pirtûkên Serok Qasimlo ya bi navê " Kurdistan û Kurd" û "Ji bo azadiyê 40 sal têkoşîn". Di hêla berhemên edebî de jî min pirtûka Rehîm Qazî ya bi navê "Pêşmerge" xwendibû.

Ez zanim ku PDKÎ bi navê **Kurdistan** rojnameyeke 15 Rojî û bi navê **Agirî** rojnameyeke panzdeh rojî diweşîne. Komela çi weşan diweşîne? Navê kovar û rojnameyên wan çine? Ez nizanim. Li Urmiyê kovareke fermî bi navê **Sirwe** derdiket. Niha ew derdikeve yan na? Tevî kovara "Sirwe" başqe kovarên din yên fermî – legal – hene yan na?

Min di malpera kovara "W" de nivîseke li ser çîrok û romana Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê xwend. Nivîs ya nivîskar ***Hesen Îrandost*** bû û ser navê nivîsê *"Hûrbîniyek li ser Çîrok û Romana Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê"* ye. Di vê nivîsê de agahdariyên baş yên derbarê çîrok û romana Kurdî de hene. Nivîskar Hasan Îrandost li gor bîr û baweriya xwe û zanîna xwe nirxandineke kiriye û dîtinên xwe pêşkêşê xwendevanên Kurdên Bakûrê Kurdistanê kiriye.

Nivîsên weha hêjayê pesnê ye. Mirov ji van cure nivîsane gelek tiştan fêr dibe. Heger min ev nivîsane nexwendana, ezê derheqê çîrok û romana Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê zêde tiştekê nizanibama. Lêbelê bi saya vê nivîsê ez gelek tiştan fêr bûm. Ev nivîs ji hêla agahdarî û şîrovekirina mijara wêjeya Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê hêjayê xwendinê ye. Mirov ji vê nivîsê gelek tişt fêr dibe. Bi hêviya ku birêz Hesen Îrandost lêkolîna xwe ya derbarê mijarê hîn berfireh bike û di derbarê wêjeya Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê pirtûkeke agahdariyê amade bike.

Wêjeya Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê xurt e û xwedî dîrokeke qedîm e. Helbesta Kurdî ya pêşî li Rojhilatê Kurdistanê hatiye nivîsîn. Ji hêla herdu beşên edebiyatê, helbest û çîrokê ve wêjeya Rojhilatê Kurdistanê gelek dewlemend e. Ji hêla qalkirina efsaneyan ve jî Rojhilatê Kurdistanê xwedî dewlemendiyeke giranbiha ye. Gelek efsaneyên Kurdî ku bûyerên wan efsaneyan li Rojhilatê Kurdistanê û Îranê pêk hatiye tê qalkirin. Efsaneya Rostemê Zal û Ebû Muslîmê Xoresanî bi nav û deng e.

Çawa ku di hersê parçeyên Kurdistanê de edebiyata devkî xurt e, herweha li perça Rojhilat jî edebiyata devkî, qalkirina efsane û çîrokên dîrokî gelek xurt e. Birêz Hesen Îrandost dibêje: "Vejandina efsane û çîrokên devkî ku jêr kursiyên xaniyan bi dirêjahiya zivistanê digotin û carinan jî nediqetiyan, dikare hizrên kulturî ber bi me vegerîne."

Li gor dîtina min pirtûkên pîroz yên olên semawî û yên olên cîhanê bi tevahî berhemên wêjeyî ne. Tewrat, Încîl, Zebûr, Qur'an, Zend Avesta, Brahma û hwd, di esasê xwe de pirtûkên wêjeyî û felsefî ne. Zerdeşt Pêxemberê Kurd e û pirtûka wî Zend Avesta berhemeke Kurdî ya wêjeyî û felsefî ye. Birêz Hesen Îrandost jî dibêje: "Zerdeşt û berhema wî ya fikrî û nivîskî bi taybetî beşek ji pirtûka Avesta bi navê Gata çavkaniyeke baş e ku mirov dikare wekî yekemîn nirxa nivîskî ya neteweya Kurd ku di beşa amajepêkirî de bişkiftiye nav bibe."

Çawa ku li Bakûrê Kurdistanê kedkarê çand û edebiyata Kurdî birêz **M. Emîn Bozarslan**, **Zeynelabîdîn Zinar** û hinekên din berhemên folklorîk dicivînin, berhev dikin û dinivîsin û herweha ji wendabûnê xilas dikin, li Rojhilatê Kurdistanê jî birêz **Simayîl Heqî**, **Mamoste Merof Ciyawok** û **Merdox Kurdistanî** bi sedan, bi hezaran pend û çîrokên Kurdî yên gelêrî berhev kirine û ji windabûnê rizgar kirine.

Li Rojhilatê Kurdistanê ji bo pêşveçûn û dewlemendiya wêjeya Kurdî ya modern nivîskarên Kurd gelek xebat kirine û xizmetên hêja pêk anîne. Yek ji wan nivîskarên hêja jî **Hesen Qizilcî** ye. Berhema wî ya çîrokan "Peykerî Geda" û romana **Rehîm Qazî** ya bi navê "Pêşmerge" ji bo pêşketina edebiyata Kurdî li Rojhilatê Kurdistanê gaveke girîng e. Di hêla afirandina helbestê de Îlxanî Zade xizmeteke pêk aniye.



Birêz Hasan Îrandost dibêje: "Celal Melikşah û komek xort û gencên tazegihîştî ku pêlên berwer xistibûne wêjeya Farisî, rû li edêntîteya xwe kirin û heta bûne rikeberanên wêjeya desthilatdar (Farisî).

Hewla Mamoste Hêmin û Kovara Sirwe eger çi di serdem û zirûfekî taybet ê siyasî de, bin per û balê Dewleta Îranê ji bo armancên taybetî hate avakirinê, destpêka şoreşeke nû ya wêjeyî bû ku bi piştgiriya mamoste û mêrxasên pênûs bi dest wekî, **Xalemîn**, **Heqîqî**, **Seyd Tahîr Haşimî**, **Hejar**, **Seyd Kamil Îmamî**, **Naf´îmezher**, ev bizav berfirehtir bû û her roj kesên nû afirandin û mirov vê kovarê dikare dibistana yekem di nîvê duyan ê sedsaliya 20'an, di warê wêjeyî de, di Rojhilata Kurdistanê de bi nav bike, ku rodîtina wêjeya Rojhilata Kurdistanê, ji esmanê xwe yê taban û derexşende ye.

Di vê kovarê de hê ji destpêkê rûpelên ku ji bo mijarên cur be cur ên çandî û ferhengî hatibûne terxankirin, çîrok babeteke sereke ye ku heta roja îro pê bi piyê kovarê rêwîngiya xwe ber bi evîna xwe, ku hebûna kevnar û dêrîn a Kurd be, dipîve.

Di destpêkê de ji ber rewşa siyasî ya zal (serdest) ku meydana ramana azad teng kiribû, piraniya xwedî ramanan bi nasnavan berhem û çîrokên xwe diweşandin.

Ser û Laq (Rûtele) 1986, Naskexan (Elî Wekîlî) heman sal, Kewşî Bile (Elî Mîhentor) û gelekên din bi ser navên A.K, B.Q, Ş.F û….."

Di mînaka kovara "Sirwe" de jî diyar dibe, bê kovarên Kurdî çawa roleke baş ji bo pêşketina çand, edebiyat û zimanê Kurdî pêk tînin.

Çîroknivîs **Elî Hesenî**, **Elî Xanî**, **Musafirê Mirîxê**, **Tenyayê Tenya**, **Riza Babaxanî**, **Amîre Azîzî**, **Nasir Wehîdî**, **C. Melîkşah** û gelek nivîskarên din yên Rojhilatê Kurdistanê berhemên baş û hêja afirandin û wan bi berhemên xwe yên edebî ji bo pêşveçûn û dewlemendiya wêjeya Kurdî xizmetên hêja pêk anîn û herweha wan bi berhemên xwe pirtûkxaneya Kurdî dewlemend kirin..

Di nivîskariyê de, di pêkanîna xebata edebî de berdewamî girîng e. Nabe ku nivîskar qima xwe bi pirtûkeke bîne û sar bibe, dev ji xebata edebî berde. Li Swêdê di serî de gelek Kurd dest avêtin pênûsê, bi Kurdî nivîsîn û gelekan jî pirtûk weşandin. Lê, di pêvajoya demê de gelekan dev jê berda, çend kes man ku xebata xwe ya karê nivîskariyê domandin. Di nav nivîskarên Kurd de yên ku ji serî heta niha di hêla lêkolînî û afirandina berhemên edebî de xebata xwe domandin, hindik man. Ji nivîsa birêz Hesen Îrandost diyar dibe ku li Rojhilatê Kurdistanê jî rewşeke weha pêk hatiye. Di serî de yên nivîsînê pir bûne û paşî hindik bûne. Ew weha dibêje: "Pir kes hatin û nivîsandin, westiyan, rabûn, rûniştin, lê kesên

ku çêj dîtin û qulqulana rist û bend û peyv û giliyan di nava hinavên wan de nedirawestiyan, di meydanê de man û dîsan nivîsandin û bûne deng. Ku Resûl Weysî yek ji wan e."

Li Bakûrê Kurdistanê piranî bi zaravayê kurmancî dipeyivin û hinek jî bi zaravayê zazakî, dimilî, dipeyivin. Li Başûrê Kurdistanê û li Rojhilatê Kurdistanê piraniya Kurdan bi zaravayê soranî diaxifin. Yên ku bi zaravayê kurmancî xeber didin hindik in. Li Başûr û Rojhilat zimanê perwerdê, edebiyatê, masmedyayê bi giranî soranî ye. Piraniya pirtûk, kovar û rojnameyên Kurdan bi soranî ye. Li Başûr kovara "**Nûbûn**" û li Rojhilat rojnama **Agirî** bi tîpên Latînî/Kurdî û bi zaravayê kurmancî jiyana xwe ya weşanê didomînin. Hewldanên van herdu weşanan hêjayê pesnê ye. Di hêla nivîsîna pirtûk û nivîsên Kurdî yên bi tîpên Latînî/Kurdî û bi zaravayê soranî di birêz **Xelîl Dihokî**, **Perwîz Cîhanî**, **Hesen Îrandost** û **Azad Kurdî** kar û barên baş, xebatên hêja pêk tînin.

Nivîskarê Kurd yê ji Rojhilatê Kurdistanê Perwîz Cîhanî bi pirtûkên xwe yên çîrok, destan, pend û romanan edebiyata Kurdî dewlemend dike. Pirtûkên çîrok û romanên wî li Bakûrê Kurdistanê bi tîpên Latînî/Kurdî hatine weşandin û gihîştine destê xwendevanên Kurd.

Di gel Perwîz Cîhanê, nivîskarên Kurd yên Rojhilatê Kurdistanê, herwekî **Siyamend Fituhî**, **Selaheddîn Ereb**, **Nesrîn Ceferî**, **Mihemmed Remezanî** , **Tûnis Gulmihemedî** û hwd, jî bi berhemên xwe yên edebî pirtûkxaneya berhemên Kurdî dewlemend kirine.

Li Bakûrê Kurdistanê edebiyata Kurdî ji rexnegiriya edebî bêpar maye. Di nav edebiyata Kurdî de –li bakur- hêla herî qels tunebûna rexnegiriya edebî ye. Rexnegirên edebî bi tilîyên destan tên jimardin. Lê belê, li gor agahdariyên birêz H. Îrandost li Rojhilatê Kurdistanê rexnegirî jî pêşve çûye. Ew dibêje : " Roj bi roj xwendevanên şareza û rexnegeriya nû diket holê. Êdî xwendevanên rexnegir ji nêçîrê digeriyan. Kê ketiba ber hisanê nirxandina wan diguvaştin û di mîzana bo kê dinivîsî de dikişandin.

Celal Melikşah ku siwarçakê meydana wêjeya farisî jî bû, peyv û bêjeyên Kurdî siwarê pênûsa xwe kir û bi çîrok û ramanên xwe, Bilbilî Tenya, Raz, Dilî Hêwa; Marû, Gaseberd, Cexzî Evîn, Nûser û Tapû û... Girnijîneke din xiste ser lêvên wêjeyê di Rojhilata Kurdistanê."

Çawa ku li Bakûrê Kurdistanê hinek nivîskarên kokKurd bi Tirkî dinivîsin û mijarên pirtûkên wan li ser Kurdan e û bûyerên li Kurdistanê qewimîne kirine, mebesta berhemên xwe û herweha hinek nivîskarên Tirk jî mijarên berhemên xwe ji nav civaka Kurd wergirtine û bûyerên ku li Kurdistanê pêk hatine di pirtûkên xwe de nivîsîne, li Rojhilatê Kurdistanê jî tiştên weha pêk hatine. Di hinek pirtûkên bi Farîsî de bûyerên xwezaya Kurdistanê hatine cih kirin. Nivîskar **Îbrahîm Yûnisî** di romana xwe ya bi navê "Goristana Xerîban" de bûyerên serdema Musaddiq yên li Kurdistanê nivîsiye.

Romana Rehîm Qazî ya bi navê "Pêşmerge" li Swêdê bi tîpên Latînî/Kurdî û bi zaravayê kurmancî hatibû weşandin. Ev roman weke pêngaveke destpêka romanên Kurdî ya li Rojhilatê Kurdistanê ye. (Ez ê di nivîseke din de nirxandina romanê bikim û naveroka romanê bi berfirehî binivîsim û romanê bi xwendevanên Kurd bidime nasîn.) Pirtûka çîrokan ya Hesen Qizilcî "Pêkenînî Geda" û romana Rehîm Qazî "Pêşmerge" bingeha edebiyata Kurdî ya nûjen û modern li Rojhilatê Kurdistanê ne. Li ser vê bingehê gelek berhemên edebî yên nûjen hatine afirandin. Nivîskar **Eta Nehayî** bi çîrokên xwe û romannivîser **Fetah Emîrî** bi romanên xwe yên nûjen edebiyata Kurdî pêş ve xistin, geş kirin. Di vê dema dawî de jî **Nasir Wehîdî** û her wisan **Kerîm Danişyar** her yekê romanek derxistiye."

Ez di vê bîr û baweriyê de me ku pêşerojeke ronî ji bo vê mijara wêjeyî ya serek di Rojhilata Kurdistanê de diyar e. Êdî roj nîn e ku nivîskarek ciwan bi çîrokeke xurt deriyê kovar û rojnameyan nequte (lê nexe). Her wisan rûpelên rêniwêniyê (rênîşankirin) riya nivîskaran ji bo berhem, an jî çîrokên xwe pêjayîtir bidin bazarê, sererast dike."

Di dema niha de li Bakûrê Kurdistanê kovareke çandî, edebî der nakeve. Berê bi navê "Pelîn" û vê paşî jî bi navê "W" kovarên çandî, edebî derdiketin, lê niha dernakevin. Li Swêdê berê bi dehan kovarên çandî, edebî yên xwerû bi Kurdî derdiketin, niha yek kovar jî dernakeve. Xwendevanên Bakûrê Kurdistanê niha ji kovarên çandî, edebî bêpar mane. Gelek başe ku li Rojhilatê Kurdistanê bi şêweyekî fermî kovarên çandî, edebî anku kovara " Sirwe" , "Awêne" , "Adîne" û "Awiyer" derdikevin.

## Hejmara Nû A Govara LAWAN'ê Derket



Hejmara 25 ya LAWAN, weşana organa Yekîtiya Ciwanên Demokrat a Kurdistana Îranê di çend rojên derbazbûyî de kete ber çavê xwendevanên xwe.

Naveroka hejmara nû a LAWAN'ê pêk hatiye ji: Sergotar, pişka siyasî, civakî, rewşenbîrî, çand û wêje, kar û çalakiyên lawan, dîrokî û her wiha beşa Kurmancî ku ev jî çend mijar derheq rewş û zirûfa zimanê Kurdî, Siyasî, dîrokî û ..., bi xwe ve digire.

Hêjayî gotinê ye ku lawan govareke werzî û giştî ye ku Komêteya Birêveberiya Giştî a YCDK Îranê diweşîne.

Em detxweşî û mandînebûnê ji Desteya Weşana "LAWAN"ê dikin û bi xebata wan re em serkevtinê dixwazin.

**Ji bo bersîvdana Xaçepirsa hejmaran (Sudoku)yê, tenê van sê xalên jêrîn berçav bigirin:**

**1. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna serjêr de tenê carekê dubare dibe.**
**2. Hejmarên 1-9'ê di xet(xêz) û stûna çeprast de tenê carekê dubare dibe.**
**3. Hejmarên 1-9'ê di nava çargoşeke 3×3 de tenê carekê dubare dibe.**

## Bersiva Sudoku a Hejmara 58'an

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | 6 | 9 | 4 | 2 | 7 | 5 | 3 | 8 |
| 4 | 2 | 3 | 9 | 8 | 5 | 6 | 7 | 1 |
| 8 | 7 | 5 | 3 | 6 | 1 | 4 | 9 | 2 |
| 3 | 1 | 7 | 8 | 9 | 4 | 2 | 5 | 6 |
| 9 | 4 | 8 | 2 | 5 | 6 | 7 | 1 | 3 |
| 2 | 5 | 6 | 1 | 7 | 3 | 8 | 4 | 9 |
| 5 | 8 | 1 | 6 | 4 | 9 | 3 | 2 | 7 |
| 6 | 3 | 4 | 7 | 1 | 2 | 9 | 8 | 5 |
| 7 | 9 | 2 | 5 | 3 | 8 | 1 | 6 | 4 |

## Xaçepirsa Hejmaran (Sudoku)

| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| | 2 | 4 | | | | 8 | 1 | |
| 8 | 3 | | | | | 4 | 5 | 6 |
| 6 | | 1 | | | 5 | | 2 | 3 |
| | | | 1 | | 4 | 7 | | 8 |
| | | | | 2 | | 1 | | |
| | | 8 | 6 | | 7 | 5 | 3 | 2 |
| 9 | 1 | | 4 | 3 | 6 | 2 | | 5 |
| 3 | 8 | 5 | | | 2 | | | 9 |
| | 6 | 2 | 5 | | 9 | 3 | 7 | |

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

## Navê Rutbeyên Hêzên Kurdistanê Dibin Bi Kurdî




Hate ragihandin ku li ser biryara serfermandeyiya leşkerên Kurdistanê, navê rutbeyên leşkerî li başûr Kurdistanê dibin bi kurdî.

Pêka nûçeyeke rojnameya **Xebatê,** rutbeyên di ordiya Kurdistanê de bibin kurdî û wek li jêr de hatine nivîsandin, divêt bihên bikaranîn. Li gor vê biryarê navên rutbeyan bi kurdî dê weha bin:

Mulazim (teymen /lieutenant): Cîdar
Reqîb (yuzbaşî/ captain): Pêşeng
Raid ( binbaşî / major): Pêşrew
Muqeddem (yarbay / lieutenant colonel): Pêşkar
Eqîd (albay / colonel): Serheng
Emîd (tumgeneral / brigadier general): Rage, Sertîp
Lîwa (tuxgeneral / major general): Serdar
Ferîq (korgeneral / lieutenant general) : Salar
Ferîq ewwel (orgeneral / general): Payedar

**TISHK TV**

## Komarîxwazên Amerîkayê Dixwazin Spaha Qods Bixin Nava Lîsteya Reş



Ji aliyê komarîxwazên Amerîkayê daxwaz tê kirin ku hêzên Qods yên Spaha Pasdarên Îranê bixin nav lîsteya terorîzmê.

"Cîm Sakstwn" nûnerê komarîxwazanên Kongireya Amerîkayê, pîşniyarek daye Wezîra Derve ya Amerîkayê ku hêzên Qods yên Spaha Pasdarên Îranê mîna sazîyeke terorîstî bidin nasînê.

Tê gotin ku Eger Wezîra Derve ya Amerîkayê vê daxwazê bipejrîne, dê Spaha Qods bikeve listeya Teror û terorîstan û dê hemen asteng jêre hebin ku saziyên din yên terorîstî re hebûye, mîna Hizbullaha Lubnanê.

Hêjayî gotinê ye ku di van rojên dawî de berpirs û medyayên Amrîkayê bera beşke zaf ji êrîşên xwe yên dijî Komara Îslamî ya Îranê dayne hêzên Qods û gotine ku ew hêza li Lubnan û Îraq û Filistînê de mejûlê çalakiyan e.




# Lîsteya Mîlyardêrên Cîhanê Derket




Kovara "Forbes" ku her sal navê kesên herî dewlemend di cîhanê de diweşîne, îsal jî lîsteyek nû weşand ku du ferq û cudahî tevî lîsteyên berê de hebûn. Yekem, hejmara Rûsiyan zêde bûye ku xuya nake çawa dewlemnd bûne. Duyem, navinca temenê Mîlyardêran hatiye xwarê.

Lîsteya navhatî dide nîşandanê ku di sala 2006'an de, 34 Mîlyardêr hebûne, lê îsal gihîştiye 53 kesan û navinca jiyê wan jî 46 sal e.

Di asta Rûsiyayê de îsal 53 Mîlyardêr hene, herweha Almanê jî 55 Mîlyardêr. Di nava Mîlyardêrên Rûsî de, yê herî dewlemend, **Romên Abramowîç**ê 40 salî ye ku heyî û samana wî 18/7 Mîlyard Dolar e.

Welatên din jî li vê rêzbendiyê de tên dîtin. Romanî û Serbistan yek nûner, Lehistan




5 Mîlyardêr, Okraniya 7 Mîlyardêr û Qezaqistan jî bi 5 Mîlyardêran bo cara yekemîn e ku li rêzbendiya "Forbes"ê de cih digirin.

Eva di halekê de ye ku lîsteya han bi hemû nûhatiyên xwe ve, hêj tu welatek îmkana hevrikî û rikeberanê bi Amerîkayê re nine. Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê di sala 2007'an de, bi 415 Mîlyardêran li pêş e û li serhev heyîn û saman wan 1,36 Tirîlyon Dolar e.

Eva 13 sal in ku li dû hev, **Bîl Gîts**, Serokê "Micro Soft"ê, nasnavê kesê herî zengîn û dewlemend yê cîhanê dest xwe tîne.

Li gor rapora "Forbes", di cîhanê de hejmara kesên ku serwet û heyîna wan pitir ji 1 Mîlyard dolaran e, digihîje 964 kesan.

**Radio Farda**